

پۆلیسی هۆڵەندا: 2

سەرتاشێکی کورد دەبێتە قاچاخچی



Zêr û almas sermayedarên Kurd dikin kelecanê

12

Hejmar / Nr. 142
12 Nîsan / April 2012

# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

**Deutschland 1,50 Euro** | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

# Xweteqandina bi navê olê



Di van salên dawî de 14 ciwanên Rojhilatê Kurdistanê xwe li Îraq û Afganistanê ji bo grûpa Ensar El-Îslam teqandine

3







## Ji ber ku bûye mesîhî

# Koreya Başûr mafê penaberiyê da Kurdekî Rojhilatî



**Rûdaw –** Dadgeheke bajarê Seûl a paytexta Koreya Başûr mafê penaberiyê da Kurdekî ji Rojhilatê Kurdistanê. Li gor raporeke rojnameya Korea Herald a koreyî ku bi zimanê ingilîzî tê çapkirin, dadgeha koreyî pêwîst dîtiye ku Kurdê ji Rojhilatê Kurditanê mafê penabertiyê wergire, ji ber ku wî ola xwe guhertiye û bûye mesîhî û divê ew ji ber desthilata Îranê bê parastin. Navê Kurdê 35 salî nehatiye eşkere kirin.

Dadwerê koreyî di dema xwendina biryarê de got: “Eger ew kes vegere welatê xwe, wê rastî xeterê bê, piştrast im ku eger vegere wê rastî kuştin û îşkencekirinê bê.” Penaberê Kurd di sala 1999ê de çûye Koreyê û dûre di sala 2001ê de berê xwe daye Japonê, lê li wir tê dersînorkirin û wî şûnde dişînin Koreya Başûr. Ji wê demê ve jî, li gor gotina wî, nêzîkî ola mesîhî bûye û di dawiyê de ola xwe guhertiye. Ev penaberê Kurd dibêje ku ew di sala 2003yê de bûye mesîhî û ji aliyê jin û mêrekî koreyî hatiye kefaletkirin, daku bibe endamekî aktîf yê dêrê.

Penaberê Kurd di sala 2007ê de jî daxwaza mafê penabertiyê kiribû, lê wê çaxê daxwaza wî ji aliyê wezareta dadê ya koreyî ve hatibû redkirin.



# Cihê laşfiroşiyê bûye kampa penaberan

» Mala ku penaber tê de hatine bicîhkirin ne tenê maleke navdar e, lê te de gellek kêmasiyên jiyana rojane jî hene.



**Koln (Rûdaw) -** Li gundekî nêzîkî paytexta Awisturya Viyana, 20 penaber li cihekî taybet hatine bi cîh kirin: Di malekê de ku berê cihê laşfiroşiyê bû. Di nav “mêvanên nû“ de çend penaberên Kurd jî hene.

Sieggraben gundekî li başûrê bajarê Viyana ye. Li gor raporteke rojnameya awisturyayî “Kurier”, li wî gundî barek bi navê “Madame Bar“ heye ku berê weke cihê laşfiroşiyê dihat nasîn. Piştî ku mêvanên “Madame Bar“ kêm bûn, xanî vala ma û kavil bû. Lê berpirsên awisturyayî ew mala taybet “vejandin“ û bo bikaranîneke din destnîşan kirin: Ev çendîn sal in ku 20 penaberên ji welatên cuda di vê mala kavil de hatine bi cîh kirin.

Kurdê bi navê Alî jî yek ji wan penaberan e. Aliyê ku ev çar sal in li wir hatiye bi cîh kirin, dibêje ji dema ku ew hatiye vir, bi vî rengî jiyana wan dimeşe, di nav vê mala kavil de. Lê ne tenê xaniyê kavil, tinebûna tiwaletên paqij, pencereyên şikandî, tinebûna sobeyan, tenê du sênîk ji bo 20 kesan; dana xwarina penaberan jî ji xwedîkirina mirovan bêtir dişibe xwedîkirina heywanan: Her serê sibeyê malbatek Awisturyayî tê “kampa penaberan“ û xwarina wan ya rojê radestî wan dike. “Kêm goşt, gellek nan, av û kola, lê çay û qehwe tine“, weke ku Alî dibeje. Bingeha vê xwedîkirina penaberan ji aliyê malbatên awisturyayî jî peymaneke di navbera wan malbatan û dewleta Awisturyayê ye: Ji bo xwedîkirina her penaberekî, ew malbat rojane 15 Euro werdigrin. Wiha xuya dike ku bi her rengî malbat hewl didin ku qezenca xwe mezin bikin.




**Penaber li “Madame Bar“ hatine bi cîh kirin ku berê wek cihê lasfiroşiyê dihat zanîn.**

Rêxistinên xêrxwaz yên awisturyayî yên weke Caritas û Diakonie ji rewşê dilteng in û dibêjin ku wan gellek caran rayedar agahdar kirine, lê pirr bi derengî ew dikevin nav hewldanan. Buroya qaymeqam jî hewl dide xwe ji berpirsyariyê bidizê û behsa kontrolên birêkûpêk û peymana di navbera xwe û malbatên awisturyayî dike. Peter Rezar (SPÖ) ji buroya qaymeqam wiha dibêje: “Di dema kontrolan de pirsgirêkên mezin nehatine dîtin, lê em ê dîsa kontrol bikin û eger peyman hatibin binpê kirin, em ê peymanê betal bikin.“

Tiştekî balkêş jî ew e ku li ser lewheya ku rêya malê nîşanî mêvanan dide, wiha hatiye nivîsandin: “Ji bo hespan û heywanên din“.

# Wezîrê Derve yê Komara Çekê: *Ez jî Kurd im*

**Hewlêr (Rûdaw) -** Nivîskarê Kurd û Wezîrê berê yê Mafên Mirovan li Îraqê, Bextiyar Emîn, di nivîsekê de behsa hevdîtineke xwe û hevjîna xwe, Sefiye Suheylî, ligel Wezîrê Derve yê Komara Çekê dike ku di vê rûniştinê de gotiye ***"tu dizanî ku ez jî Kurd im?"***

Bextiyar Emîn di vê nivîsê de behsa serdaneke xwe bo Çekê û hevdîtina ligel Wezîrê Derve yê Çekê, Karel Schwarzenberg dike. Di dema xwarinê de û bi amadebûna nivîskarê navdar ê Misrî Sadedîn Îbrahîm, Schwarzenberg gotiye, ***"tu dizanî ku ez jî Kurd im? Bavkalên me berî 200 salan ji navçeya Qefqasê koçberî Çekê bûne. Loma em bi bingeha xwe Kurd in."*** Bextiyar Emîn dibêje wê demê hevjîna wî Sefiye Suheylî ku li Parlamenê Îraqê parlamentereke serbixwe ye, ligel prensêseke Siudî mijûlê gotûbêjekê bû û haya wê ji van gotinên Wezîrê Derve yê Çêkê nebû. Vêca dema Bextiyar axaftinên vî wezîrî ji wê re dibêje, ew dibêje, "eger bi gotina we Kurdan be, Umkulsum jî (stranbêja herî navdar a Ereban di sedsala bîstan de) Kurd e", lê wê demê Sadedîn Îbrahîm gotiye ***"belê rast e guhê min jî li axaftinên wezîr bû."***



**Karel Schwarzenberg**

Rûdaw

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Marketing û reklam**
Mansour Sedghi
m.sedghi@rave-online.org

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net / www.rudaw.eu
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.

# 14 ciwanên Rojhilatê Kurdistanê xwe li Îraq û Afganistanê teqandine

**Sakar Ebdullazade** Hewlêr

Tevlîbûna ciwanên Rojhilatê Kurdistanê di grûpên tundrew de wek Ensar El-Îslam berdewam e. Pisporekî civakî yê ji Rojhilatê Kurdistanê jî dibêje ku pirraniya van ciwanan ji ber bêkariyê tevlî van grûpan dibin.

Piştî lêdana bingeh û baregehên rêxistina Ensar El-Îslam li devera Hewraman li Başûrê Kurdistanê di sala 2003yê de, pirraniya endamên vê grûpê ku ji vê êrişê xilas bûn, berê xwe dan Rojhilatê Kurdistanê, nemaze jî navçeyên Seqiz û Bane.

Ev grûp ku bi agahdarî û hevkariya Îranê li wan deveran bi cîh bûye, bala hinek ciwanên wan deveran kişandiye û çend ciwan tevlî wan jî bûne. Bi vî rengî hinek ji van ciwanan bi gotina vê grûpê, bi mebesta pêkanîna kiryarên xwekujiyê, berê xwe dan Îraq û Afganistanê.

Li gor agahiyên Rûdawê, piştî hatina vê grûpê bo Rojhilatê Kurdistanê, 14 ciwanên Kurd xwe li Îraq û Afganistanê teqandinê, yan hatine kuştin. Herwiha hejmarekê jî berê xwe dane bingehên rêxistina Al-Qaîde li Pakistan û Afganistanê.

### Bi şev li mizgeftan dersan didin

Grûpa Ensar El-Îslam ev derdora 10 salan e ku li mizgeftên hinek bajarên Rojhilatê Kurdistanê û hinek taxên feqîran derketiye holê. Civaknas Xalid Tewekulî ji bajarê Seqizê ji Rûdawê re ragihand: "Di salên borî de beşekî van grûpên selefî û tund hatin Seqiz û deverên derdora wê û dest bi çalakiyan kirin û hejmareke zêde ya ciwanan birin aliyê xwe. Ew bêtir bi şev dersan didin ciwanan."

Berpirsê komîsyona siyasî ya PDK-Îranê, Kawa Behramî, jî dibêje ku ew grûp ji xeynî dersgotin û handana lawên Kurd li mizgeftan, "li bingehên xwe yên taybet jî wan fêrî perwerdeya leşkerî dikin." Li gor agahiyên bawerpêkirî yên ku li cem Behramî hene, "par van grûpan nêzîkî Ciwanro bingeheke perwerdeya eskerî vekiribûn û lawên Kurd fêrî xweteqandin û kiryarên terorîstî dikirin."

### "Ji ber bêkariyê tevlî wan dibin"

Xalid Tewekulî sedemên girêdana ciwanên Kurd bi van grûpan ve, ku xelkê Rojhilatê Kurdistanê wan wek selefî binav dikin, wiha diyar kir: "Hebûna pirsên civakî wek bêkarî, bikaranîna madeyên hişber, hejarî, pirsên neteweyî û hinek valahiya siyasî." Berpirsê pêwendiyên Kurdistanî yên Sazûmana Xebat a Kurdistana Îranê, Bêhruz Erdelan, ji Rûdawê re dibêje: "Karesata ku niha li Rojhilatê Kurdistanê bi destê van grûpan rû dide berî her tiştî berhema siyaseta Îranê ye li Kurdistanê. Ji ber nebûna atmosfereke azad li Îranê û bêkariyeke bêsînor li Rojhilatê Kurdistanê, hejmarek ciwanên Kurd bi hêsanî dikevin xefika wan grûpên hişk."

### "Bi azadî li Îranê ne"

Li gor agahiyên hinek çavdêran, ev grûp bi azadî karê xwe li Îranê dikin, lê civaknas Xalid Tewekulî dibêje: "Ne zêde azad in, lê zêde bi nehênî jî kar nakin." Bêhruz Erdelan ragihand: "Hêzeke mezin li pişt wan heye û ji aliyê rêxistina Al-Qaîde û grûpên hişk ên din tên piştgirtin. Îran jî wek metirsiyekê berê xwe nade van hêzên îslamî, eşkere yan veşartî jî hevkariya wan dike. Di baweriya Îranê de ev grûp di pêşerojê de wê bibin kelem li pêşberî partiyên neteweyî yên Rojhilatê Kurdistanê, lewma piştgiriya wan dike."

Kawa Behramî qala nêrîna van grûpan li ser pirsa kurdî dike û dibêje: "Ew eşkere di nav xelkê de dijîtiya pirsên neteweyî nakin, lê di bingeh de dijî bidestanîna hemû mafên neteweyî ne bo gelê Kurd û di pêşerojê de dibin kelem li pêşiya pirsên neteweyî yên Kurdan li rojhilatê Kurdistanê." Rojnamevan û çalakvanê mafê mirovan Saman Resulpûr qala pêwendiya van grûpan û Îranê dike û dibêje: "Atmosfereke azad bo çalakiyên van grûpan li Kurdistanê hatiye peydakirin û bi azadî li mizgeftan bangewaziya xwe dikin. Îran sûdek mezin ji van grûpan werdigire." Berpirsên Îranê bi xwe van gunehbariyan red dikin û dibêjin ku Îran ji hebûna van grûpan zerermend e.

**Ciwanên Kurd yên ku xwe teqandine yan hatine kuştin**

- **Cebar Şêx Muradî** (28), ji Ciwanro ye, xwe li Bexdayê teqand.
- **Rizgar Ezemî** (28), ji Ciwanro ye, di êrişeke Amerîkiyan de li Afghanistanê hat kuştin.
- **Îdrîs Behramî** ji gundê Godik e, li Afghanistanê hat kuştin.
- **Elî Fetahî** (29), ji Ciwanro ye, li Qendehar (Afganistan) xwe di baregeheke Amerîkiyan de teqand.
- **Layîq Murîdî** (26), li bakurê Afganistanê xwe bi tankeke Amerîkiyan de teqand.
- **Ferîdûn Purmend** (33), ji Pawe ye, li Celalabad (Afganistan) xwe bi xaleke kontrolê ya Amerîkiyan de teqand.
- **Muslîm Ehmed** (20), ji Selas a Bawecanê ye, xwe li Afganistanê teqand.
- **Star Tahirî** (25), wek Star Yaxî tê naskirin, xwe teqand.
- **Kemal Mihemedzade** (23), xwe teqand.
- **Keyhan Weysî** (32), xwe teqand.
- **Perwîz Qadirî** (30), xwe teqand.
- Herwiha sê ciwanên ji Seqizê bi nasnavên **Gulistanî, Bêglerî û Kerîmpur** li Afganistanê hatin kuştin.

# Servet Encu çû Zaxoyê: *1500 malbat bi niyet in ji Tirkiyeyê bar bikin*



Servet Encu

**Zaxo (Rûdaw)** – Piştî ku hikûmeta Tirkiyeyê bûyera Roboskê, ya ku 34 ciwan tê de hatin kuştin, eşkere nekir, hinek ji mirovên wan goriyan ber bi Herêma Kurdistanê koç kirin. Yên ku heya vêga jî li Roboskê mane, çavlirêya helandina berfê dikin da ku bi tevahî bên aliyê din yê sînor.

Davût Encu, Hacî Encu û Servet Encu ku ji wê bûyerê filitîn, piştî çend rojên bûyerê, bi tometa qaçaxçîtiyê ketine ber lêpirsînê. Roja 5ê Nîsanê Servet Encu, ligel herdu zarokên xwe Heval (7) û Asya (13), bi qaçaxî hatin Zaxoyê. Ew dibêje: "Ji tirsa girtinê, sê mehan li mala xwe ranedizam." Servet niha li malekê li Zaxoyê dijî û hevjîna xwe û 3 zarokên xwe yên din li Roboskê hiştine. Piştî bûyera Roboskê, Servet Encu rastiya bûyerê ji çend televizyonên tirkî re gotibû: "Lewma, li her cihê ku bidîtama, wê min di cih de girtibûna." Servet bi rêyeke qaçax hatiye Başûr û 8 saetan li ser piyan meşiyane heya gihiştine ser sînor. Servet bi niyet e di demeke nêzîk de endamên din yên malbata xwe bi qaçaxî bîne Herêma Kurdistanê. Asya Serwet ya 13 salî, ku li Roboskê di pola 7. de dixwend, dixwaze li Herêma Kurdistanê bi zimanê kurdî bixwîne û dibeje: "Êdî naxwazim bi zimanê tirkî bixwînim."

Li gor agahiyên Rûdawê, ji bilî Servet Encu, rûniştiyên çar gundên Roboskê, Hudane, Bêjeh û Zeviyane, ku hejmara wan 1500 malbat in, ji ber bûyera Roboskê bi niyet in bar bikin û derdasî Herêma Kurdistanê bibin. Servet got: "Xelk çavlirê ye ku bihar bê û berf bihêle, daku koç bikin parçwyên din ên Kurdistanê."

### "Hikûmet bûyerê eşkere neke, koçî Herêma Kurdistanê dikin"

Muxtarê Roboskê Haşim Encu jî ragihand: "Xelkê Roboskê daxwaz dikin ku kujer bên dadgehkirin. Piştî bûyerê bi çend rojan ev şert hat ragihandin. Gotin eger kujerên lawên me nebînin, em ê koç bikin, eger ne hemû bin jî lê beşek ji wan koç dikin." Lê pirraniya xelkên Roboskê ku li 160 mal in, biryara koçkirinê dane. Reşîd Anit ku bavê yek ji goriyan e, dibêje: "Dewlet naxwaze kujerên lawên me kifş bike. Hinek ji me li benda helandina berfê ne û hinek jî baş dibînin derfeteke din jî bidin hikûmetê. Eger tiştek nebû, em ê hemû bi hev re koç bikin." Lê Sedîq Sileman tekez dike ku ne tenê Servet Encu bar kiriye Herêma Kurdistanê: "Jina şehîd Ferhad û Selam û Husnî bi rêya Îbrahîm Xelîl çûne Herêma Kurdistanê, daku daxwazê ji berpirsan bikin rêya mabûnê bidin wan."

### Malbat axivîn, weşana zindî hat birîn

Dê û bavên 34 goriyên Roboskê roja 10ê Nîsanê li Enqerê li parlementoyê tevlî civîna grûba BDPê bûn. Dema endamên malbatên Roboskê bo axaftinê çûn ser kursiyê kanala meclisê TBMM TV, kamalê weşana xwe ya zindî birî. Malbatên goriyan bi dirûşmeya "Dad Ji Bo Roboskê" çûn Enqerê û li parlementoyê tevlî civîna grûba BDPê bûn. Endamên malbatan di kursiya BDPê de axivîn û bo kuştina zarokên xwe dadmendî xwestin. Di wê dema ku ev axaftin dikirin, weşana zindî ya kanala parlementoyê hat birîn.




Ciwan el-Gutne di çalakiyekê de

# Kê Ciwan el-Gutne kuşt?

## » Çalakvanek: *PYD xwarziyê Mişeel Temo revand û işkence kir, lê hêzên ewlekariyê ew kuşt*

**Sîrwan H. Berko** Hewlêr

Dem yekşema 25ê Adarê ye, seet dora 7.35ê êvarî ye. Şeş çalakvanên tensîqiya "Ahrarên Dirbêsiyê" di malekê de li bajarê Dirbêsiyê kom bûne û amadekariyên xwe ji bo xwenîşandaneke li dijî rejîma Beşar el-Esed ji bo roja duşemê dikin. Ji nişkê ve çar kesên rûnixûmandî, çekên kalaşnîkov û demançe di destên wan de, derbasî odeyê dibin û berê xwe didin çalakvanekî. Tenê yek ji herçar kesan diaxive, bi kurdiya herêma Kobanî yan Efrînê, mîna ku ew Ciwan ji berê ve nas dike, yekser berê xwe dide wî: "Ciwan, te gotinên xerab bo serok Apo gotine!" Ciwan û her pênc hevalên wî matmayî li êrîşkeran dinêrin. Yek ji çalakvanan bersivê dide: "Bira, em tevde Kurd in, ti kesî gotineke xerab li ser serok Ocalan negotiye.." Lê bersiva wî herçar kesên nenas razî nake. Ew bi Ciwan digirin û wî bi xwe re derdixin derve: "Tenê em dixwazin du gotinan ji te re bêjin."

Ciwan el-Gutne xortekî 22 salî ye, dora 2,03 metre dirêj e. Ew di nav deh zarokên diya xwe de yê sêyemîn e. Kesên wî nas dikin, ser wî dibêjin ku ew mirovekî nerm e, fediyok e, "di nav malbatê de yê herî bi edeb e", wek ku apek wî dibêje. Ji dema ku şoreşa li Sûriyê di Adara 2011ê de dest pê kir, xwendekarê zankoyê li şûna ku li Helebê xwendina xwe berdewam bike, li bajarê xwe Dirbêsiyê ligel çalakvanên din di koma "Ahrarên Dirbêsiyê" de xwenîşandanên li dijî rejîmê amade dike û bi rê ve dibe. Erkê Ciwan, ku navê wî yê rast Xelûf e, kişandina dîmenên xwenîşandan e, belavkirina wan di înternêtê de û pêkanîna pêwendiyên bi alavên ragihandinê re. Ji ber ku ew ji malbateke dewlemend e, "axayê şoreşê", wek ku hevalên wî wî bi nav dikin, ne tenê alîkariya diravî ji bo çalakiyan peyda dike, ew herweha carê xwenîşandanên li bajarê xwe bi awayekî zindî di kanalên televizyonê de diweşîne. Ciwan yek ji çalakvanên sereke yên li Dirbêsiyê ye. Ew xwarziyê Mişeel Temo ye. Herkes wî nas dike, lê hene yên ku jê aciz in. "Mêvanên ne bi xêr hatî" yên êvara yeşemê ji van kesan in.

### "Ku ji niha û nîv seetê Ciwan venegere, em ê Dirbêsiyê bişewitînin"

Herçar êrîşker ne tenê Ciwan bi xwe re dibin, ew herweha kilîtên otomobîla li pêşiya xanî ji apê Ciwan, ku bi xwe jî di nav çalakvanan de bû, distînin û Ciwan bi wê otomobîlê direvînin. Apê Ciwan, Xelûf el-Gutne, yekser bi telefonê bi Ebdilîlah el-Erebo re diaxive û jê re dibêje ku divê Ciwan di maweya nîv seetê de li malê be. Lê berpirsê PYDê li Dirbêsiyê bersiva wî dide: "Îşê me bi revandina Ciwan tine ye; ne hevalên me ne, em wan nas nakin." Xelûf el-Gutne êdî bi dezgehên ewlekariyê re diaxive û doza vegerandina biraziyê xwe dike: "Ku ji niha û nîv seetê Ciwan venegerê, emê Dirbêsiyê bişewitînin." Di vê navê de heval, dost, malbat û xelkên bajêr bi otomobîlan li Ciwan digerin.

Du seetan piştre. Li gundê Qitînê, dora 10 kîlometreyan dûrî Dirbêsiyê, hêzên hevbeş ên dezgehên ewlekariyê yên leşkerî û ezmên bi guleyan êrîşî otomobîlekê dikin. Ji pênc kesên di otomobîlê de du tên kuştin, du birîndar dibin û yekî din bê birîn difilite. Hêzên ewlekariyê yekî kuştî û hersiyên din – herçar ji Dirbêsiyê ne - bi xwe re dibin û diçin; ew kuştiyê din di tirimbêlê de dihêlin: Ciwan el-Gutne.

Ji bilî nîşanên neh guleyan, herweha li gellek aliyên laşê wî nîşanên birînên bi kêrê û alaveke giran xuya dikin. Berî ku Ciwan di otomobîle de bê kuştin, ew rastî îşkenceyên dijwar hatibû. Ne tenê ev: Destê wî yê rastê hatibû şikandin. Bi vî destê xwe Ciwan carê dîmenên xwenîşandanan dikişandin. Darîn, ku yek ji tensîaq "Ahrarên Dirbêsiyê" ye, ku ji ber tirsê naxwaze navê wî yê rast bê nas kirin, eşkere rêxistina PKKê li Sûriyê, PYD, bi revandin û îşkencekirina Ciwan gunehkar dike. Ew ji Rûdawê re dibêje: "Li Qitînê dadgeheke PYDê heye. PYDê Ciwan ji ber çalakiyên wî yên li dijî rejîmê revand, muhaseba wî kir û ew bi hovîtî îşkence kir."

Berî roja revandina Ciwan el-Gutne, dubare di navbera çalakvanên PYDê û yên "Ahrarên Dirbêsiyê" de pirsgirêk hebûn. Zagros, ku endamekî din ê "Ahrarên Dirbêsiyê" ye, wan rojan tîne bîra xwe: "Ji ber me doza rûxandina rejîmê dikir, hevalên PYDê aciz dibûn; ji ber me ala Kurdistanê bilind dikir, wan şerê me dikir û digot ev ne ala Kurdistanê ye, ew ya Herêma Kurdistanê ye; ji ber hejmara kesên di xwenîşandanên me de pirr bûn û kesên ku bi wan re derdiketin, pirr hindik bûn, wan êrişî me dikir." Lê mesele di asta acizbûn û êrîşên bi gotinan de nedima. "Hevalên PYDê çend caran gef li me dixwarin, Ciwan bi xwe çend caran hat tehdîd kirin."

### "PYD li gor vî mantiqî dixebite: Ez im û ne ez im"

Piştî ku nûçeya kuştina Ciwna el-Gutne belav bû, PYDê di daxuyaniyekê de eşkere kir ku di wê êrîşa li Qitînê de endamê wan Kemal Ehmed Hisên hatiye kuştin û sê endamên wan yên din ji aliyê hêzên ewlekariyê ve hatine girtin. PYD rejîma Sûriyê bi revandina Ciwan el-Gutne û kuştina wî û Kemal Hisên gunehkar dike. Li gor wê herçar endamên wan bi hawara Ciwan ve çûne û wan xwestiye wî rizgar bikin.

Lê ne malbata Ciwan, ne hevalên Ciwan, ne di nav partiyên kurdî de, ne jî di nav çalakvanên mafên mirovan de, ti kes vê versyona PYDê bawer nakin. Lê ew rejîmê gunehkar dikin. Endamekî malbata Ciwan ji Rûdawê re dibêje: "Kê Ciwan kuştine jî, rejîmê ferman daye." Ku ji bo Ciwan el-Gutne û Kemal Hisên, ku herdu ji heman bajarî ne, du cenaze pêk hatin, û ku di bin konê şîniya Ciwan de malbat û hevalên wî rê nedan PYDê ku mîna rêxistinên din gotinekê pêşkêş bikin, nîşanên nebûna baweriya bi PYDê ye. Lê tikes newêrê vî tiştî eşkere bêjê. Bi şertê ku navê wî neyê nivîsandin, çalakvanekî mafê mirovan ji Dirbêsiyê ji Rûdawê re dibêje: "Sedî sed PYDê Ciwan revandiye û ew îşkence kiriye. Lê hêzên ewlekariyê ew kuştiye." Ev çalakvanê ku rêxistina wî di salên dawî de berdewam bê tirsa ji rejîmê behsa binpêkirinên mafên mirovan û kuştina leşkerên Kurd di nav artêşa Sûriyê de dikir, niha ji ber jiyana xwe ditirse: "Em ji kuştinên siyasî ditirsin. Li vê derê acizbûneke mezin ji PYDê çêbûye. PYD li gor vî mantiqî dixebite: Ez im û ne ez im."

Piştî kuştina Mişeel Temo, Nesrîdîn Birhik, Dr. Şêrzad Hec Reşîd û revandina gellek çalakvanên Kurd û gefxwarina li gellekên din, rewşeke tirsê ya mezin li Rojavayê Kurdistanê peyda bûye. Heta niha ti belge tune ne ku destên endamên PYDê di kuştinan de heye. Lê rexnegirên PYDê wê bi hevkariya bi rejîma Sûriyê re gunehbar dikin. Çalakvanekî mafê mirovan ji Qamişloyê dibêje: "Lihevkirinek di navbera wan û rejîmê de heye. Xelk bêtir ji PYDê ditirsin. Tevgera kurdî nikare xwe û xelkê biparêze. Ji ber vê yekê em newêrin navê xwe bêjin û eşkere PYDê gunehkar bikin." Çalakvanekî din bi rêya facebookê agahiyan dide Rûdawê, lê dawiya dawî rica dike: "Ji kerema xwe re navê min nenivîsînin, ji ber ku ew li vir bi karên terorê radibin."

Aldar Xelîl, berpirsekî bilind ê PKKê li Sûriyê, dema van gotinan dibihîse, serê xwe dihejîne û dibêje: "Ne me kes revandiye, ne me kes kuştiye, ne jî dadgehên me hene. Carekê hevalên me dizek girtin û lêpirsîn ligel wî kirin. Em rêxistineke siyasî ne, em xelkên xwe nakujin."

Diyar e ku Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS), ku Ciwan el-Gutne endamekî wê bû, êdî nema tevgera PYDê tehmûl dike. Tevlî ku di navbera wê û PYDê de peymaneke hevkariyê heye, lê Encûmenê biryar daye ku şandekê bişîne Qendîlê, wek ku serokê wê Ehmed Silêman ji Rûdawê re tekez kir û got: "Armanca vê serdanê xurtkirina peymana di navbera me û PYDê de ye û herweha ji bo danûstandina li ser rewşa siyasî û aştiya civakî li bajarên Kurdan e."

Endamekî birêvebir ê Encûmenê, ku nexwest navê wî eşkere bibe, ji Rûdawê re got ku piştî ku di dema dawî de çalakvanên Kurd hatin kuştin û gef li gelekên din hatin xwarin, "me pêwîst dît ku divê em bi serokatiya PKKê re biaxivin, ji ber tiştê ku PYD dike nema tê tehmûl kirin".

## Şirove




**Bayram Ayaz**

Pirsa piştî vekişandina leşkerên Amerika ji Îraqê wê çi biqewime, derdorên dîplomatîk û Kurd gellekî meşxul dikir. Serokatiya Kurdistanê dixwest pêşiya xwe bibîne. Gelo wê destûr û sistema federalî bimîne, pirsên hene çareser bibin, an hêza pirranî Şiî wê Îraqê ber bi cîhekî din ve bikşîne?

Serokwezîr Nurî Malikî û hevpeymanên wî dan ser rêyeke çewt û bi metirsî. Malikî hewl dide dest bide ser hemî derfetên desthilatê. Wezareta navxweyî, berevanî û berpirsiyariya koma ewlekariya netewî jî girt destê xwe. Bi saya van postan hêza ewlekariyê, istixbaratê û berevaniyê xist bin kontrola xwe. Kontrola petrolê da ber destê hevalê xwe Huseyn Şaristanî, ku hatina Îraqê ji sedî nod û pênc ji firotina petrolê ye. Malikî sala dawî tenê klîka (komik) xwe xurt kir. Xwe ji dema piştî vekişîna Amerikiyan ji Îraqê re amade kir. Demokrasî û sistema federalî ji bo vê klîkê ti qîmeta xwe tine, ew Îraqê wekî dewletekî navendî birêve dibin. Pêdiviyên destûrî bi cîh nayînin, wek nimûne pereyên pêşmergeyan nadin. Qewlên peymana lihevkirina Hewlêrê û mercên maddeya 140ê bi cîh nayînin. Bi zanatî pirsa Kerkûkê û cîhên veqetandî paşde dixin. Ferqa van û Baasiyan ew e ku hê êrîşê Kurdistanê nekirine. Tehdîtan dikin, lê wê hêz û taqetê di xwe de nabînin ku bi tank, top û firokeyan êrîş bikin.

Demokrasî û federalizm li Bexdayê li ber tehlûkeyê ye. Klîka Malikî dixwaze Îraqê bi temamî bixe bin kontrola xwe. Ji Sunniyan natirse. Lê pêşkeftina Kurdistanê vê klîkê aciz dike. Bi mijara Kerkûkê, Xaneqînê û deverên din dilîze. Vê dawiyê li qêza û gundên ku Kurd li nav Ereban dijîn, zilmê li Kurdan dikin, Kurdan didin revîn. Li Kerkûkê jî leyistikan digerînin, dixwazin hêzên taybetî yên bi Malikî ve girêdayî bi cîh bikin. Bi taybetî pirsa Kerkûkê û mijara hilberîn û parvekirina petrolê de niyeta klîka Malikî pîs e.

Serokê Kurdistanê birêz Mesud Barzanî mehên dawî di axaftinên xwe de bala vê klîkê kişand, daxwaz kir ku pirsên nabeyna Kurdistanê û Bexdayê çareser bikin. Barzanî bi eşkere got, ew rê nadin careka din li Bexdayê rejimeke dîktator peyda bibe. Di bin dîktatoriyê de wê nejîn. Serokê Kurdistanê li Washingtonê peyamên rasterast dan. Got: eger di nav demekî maqûl de alozî çareser nebin, emê çareyê ji xelkê xwe bipirsin û biryara xwe bidin.

Bi serdana Washingtonê pêwendiyên Kurdistanê û Bexdayê ket qonaxeke nû. Eger Bexda di destê vê klîkê de bimîne, Îraq dikeve rêza hevpeymanên Îranê. Ev yek wê li Rojhilata Navîn bandoreke xwe li du hev (domîno) hebe. Ev dikare pêvejoya Kurdistaneke serbixwe nêzîktir bike, lê tehlûkeya şerekî li ser Kerkûkê û herêmên veqetandî jî bi xwe re bîne. Eger emrê rejîma Esed dirêj bibe, hevbendiya Îran-Bexda-Şam-Hizbullah xurt bibe, ev jî dikare rewşeke din bi xwe re biafirîne. Rojhilata Navîn ji gellek buyerên nû re bi hemle ye. Kurd hewce ye yekrêziya xwe xurt bikin, ji bo berjewendiyên xwe şiyar bin.

# *"Tirkiye wê mafê çarenûsiyê bo Kurdên Sûriyê qebûl nekê"*

» Her ku rewşa rejîma Sûriyê berbi têkçûkê diçe, guftûgoyên li ser bandora Tirkiyeyê di Sûriya piştî Esed de gurr dibin.

**Zinar Ala**

Ev bêtirî salekê ye ku serhildana gelê Sûriyê li dijî rejîma Esed dest pê kiriye, lê heya roja îro jî opozisyona erebî û kurdî dabeşkirî ne û daxwazên wan ji hev cuda ne. Derbarê rewşa Kurdan li Rojavayê Kurdistanê û viyanên Kurdan ji bo dema piştî rûxandina rejîma Esed, me li nêrîna sê zanyarên ewropî yên pisporên di warê pirsgirêkên Rojhilata Navîn de pirsî.

Rojnamevan û dîroknasê baskî Manuel Martorell li ser daxwazên Kurdan derbarê federalî û mafê çarenûsiyê de ji Rûdawê re got "Ez bawer dikim ku Tirkiye wê rê nede avakirina welatekî federal li Sûriyê, her wiha wê nepejirîne ku Kurd mafê çarenûsiyê bi dest xînin, digel ku ev daxwazekî lojîk e piştî êşa gellek dehsalan û marjînalkirina Kurdistanê ji aliyê hikûmeta Şamê ve.

### "Xweserî bê kesên amade û profesyonel çênabe"

Martorell, yê ku du pirtûk û bi sedan gotarên wî li ser Kurd û Kurdistanê hene, wiha analîza xwe didomîne: "Di nêrîna min de wê gellek pratîk be ku ji nenavendkirina dewletê destpê bibe, tiştê ku em li Spanyayê jê re dibêjin herêmkirina welêt. Herêmkirin li Sûriyê nayê wateya agahdarkirina xweseriya Kurdistana Sûriyê, lê belê xweseriya parêzgehî û ya lokal, ango hemû gund û bajar bikaribin xwe bi rêve bibin, bi şêweyekî ku bi carekê demokratîk be. Heman tişt divê li parêzgehên din jî çêbibe û rengekî ji encûmen yan jî parlemanên wan jî hebin. Ev guhertin divê bi awayekî zelal di destûrê de bên diyarkirin, di heman demê de divê derfet ji bo çêkirina koordinasiyonê di navbera çend parêzgehan de hebe, di warê mijarên hevbeş weke çand, perwerdekirin û geşpêdana aborî û hwd. De. Pirr pêwîst e ku hem li ser asta parêzgehan, hem jî li ser asta lokal alavên ragihandinê yên serbixwe û azad hebin. Di destûrê de divê mecal ji têgihîştinek pirrwate re tine be. Divê hin tişt di destûrê de baş bên zelalkirin, wek selahiyeta hikûmetên gund û bajaran, şêweya fînansekirina şaredarî û parêzgehan, ango çi bac dikarin wergirin û çi bac li wan dikeve ji aliyê dewletê ve.


Ignacio Álvarez Ossorio


Manuel Martorell


Christian Sincalir

Martorell ku li herêma xweser Navarrayê dijî û sîstema herêmen xweser li Spanyayê ji nêz ve nas dike, şîretekê li Kurdan dike: "Wê baş be ku ciwanên Kurd, ligel beşdarbûna xwe di şoreş û siyasetê de, pergalên fînansekirinê yên herêmên xweser li Spanyayê bixwînin, ta ku bizanibin çawa danûstandina darayî ligel dewleta navendî bikin û çawa ev girêka aborî tê organîze kirin. Xweserî bê kesên amade û profesyonel çênabe."

Profesorê beşa Lêkolînên Erebî û Îslamî li Zanîngeha Alicante Ignacio Álvarez Ossorio derbarê vekêşîna Kurdan ji civîna dawî ya opozisyona sûrî li Stenbolê wiha ji Rûdawê axivî: "Kurdan bi helwesta xwe diyar kirin ku ew ne amade ne ku danûstandinê bikin ligel opozisyonekê ku dixwaze doza kurdî bê derengkirin heya piştî rûxandina rejîmê. Vekişandina Kurdan jî giliyeke li dijî Encûmena Niştimanî ya Sûriyê ku di nerîna wan de bûye klûbeke sunnî ku tê de cihê hindekahiyên etnîkî û olî tune ye, her wiha vê klûbê diyar kir ku ew ne amade ye bo pejirandina nasnameya Sûriyê wek welatekî ne Ereb, heman tiştê ku partiya Baasê pê bang dikir, ji dema damezirandina xwe ve. Xwediyê pirtûka "Siria Contemporanea" Ossorio helwesta tevgera kurdî beramberî opozisyona erebî wiha dinirxîne: "Di baweriya min de em niha di kêliyekê girîng de ne ku divê hindekahiya Kurd tê de eniyek hevbeş ligel opozisyonên din li dijî rejîma Esed ava bikin. Têdigihêjim ku Kurd dixwazên mafên xwe piştî rûxandina rejîma Esed misoger bikin, lê divê ev tişt nebe bend ku herdu alî bi hevre koordînasyonê bikin. Ne hêsan e ku opozisyona erebî nekeve bin bandora lîstikên rejîmê û hêzên herêmî, lê divê nexşerêyek wan a zelal hebe ji bo parastina perjewediyên gelê Sûriyê. Divê ku li hember destêwerdana derveyî bisekinin, nemaze hewldanên wan hêzên herêmî ku dixwazin şerekî bi rêya wekaletê li Sûriyê çêbikin".

### "Divê Kurd li ser zimanekî gîştî yê destûrê li hev bikin"

Christina Sinclair, birêvebirê alîkar li Navenda Lêkolînan ya Rojhilata Navîn li Zanîngeha Arîzona, ji Rûdawê re axivî û got: "Êdî diyar e ku opozisyon derbarê pêşeroja Suriyê de li hev nake, her wiha cudahiyên diyar di nav hin grûbên opozisyonê de hene. Ji bilî ku hinek bi xweseriyê bang dikin û hinek din jî mafê çarenûsiyê dixwazin, çi encam derkeve divê di destûreke nû de bê çespandin. Divê hemû dengên ku li Sûriyê hene di guhertina destûrê de beşdar bin, destûrek ku cûrbecûriya li welêt nîşand bide û bihêle ku ev cûrbecûrî geş bibe".

Ji bo ku Kurdên Sûriyê mafên xwe misoger bikin, Sinclair wiha axivî: "Di baweriya min de gava yekemîn ku divê Kurd ji bo parastina mafên xwe di dema piştî Esed de bavêjin, ku ew li ser zimanekî gîştî yê destûrê li hev bikin ku rêz ji cûrbecûriya Sûriyê re bigre û geş bike. Xaleke pirr girîng ji destûra nû jî, divê ku garantî ji azadiya ziman re û herwiha mafê destûrî ya perwerdebûna bi zimanê dayîkê hebe."

# Malbateke Kurd li parkeke Skotlandê dijî


Hikûmet wan dersînor nake, lê mafê penaberiyê jî nade wan

**Herald Scotland (Rûdaw) -** Karzan Omer û hevjîna wî bi navê Şêwe Mihemed, ji ber ku daxwaza wan ya penaberiyê ji aliyê hikûmeta Skotlandê hatiye redkirin, niha li ser caddeyan û di nava parkên bajarê Glasgowê de dijîn.

Li gor raporeke rojnameya Herald Scotland, Karzan û hevjîna wî Şêwe ji ber redkirina daxwaza wan, êdî hikûmeta Skotlandê hevkariya wan nake û niha neçar mane ku bi şevan di nav parkeke bajarê Glasgowê de razin û Xaça Sor jî cîhên demkî dane wan. Karzan ji Herald Scotland re gotiye ku ew êdî bêzar bûye ji vê jiyanê û daxwaz kir ku hikûmeta Skotlandê çareyekê ji wan re bibîne û got: "Wek ku em heywan bin li vir dijîn."

Li gor raporê, ew malbatên penaber yên ku li ser kolanên Glasgowê dijîn bi giştî Kurd in. Van malbatan ji aliyê saziya Xaça Sor cil û berg û nivîn wergirtine. Di raporê de hatiye gotin jî ku zêdeyî sed malbatên penaber ku hikûmeta Skotlandê daxwaza wan a mafê penaberiyê red kiriye, di vê rewşê de dijîn.

Ev demeke ku hikûmeta skotlandî biryar daye ku rasterast wan penaberan dersînor neke yên ku dadgehê daxwaza wan red dike, vê yekê jî wisa kiriye ku hejmara penaberên ku li ser kolan û li parkan dijîn, zêde bibe. Derbarê hevkariyên saziya xaça sor, Karzan dibêje: "Hevkarî ne tiştek e, lihêfeke demkî dane min û hevjîna min û ji me re gotin herin di bexçeyan de razin." Karzan kifş jî kir ku ji xeynî nivînên demkî, destmal û şampo jî dane wan.

Lê berdevkê xaça sor a brîtanî red kiriye ku wan daxwaz ji wan penaberan kiribe ku li parkan rakevin: "Me qet ji xelkê nexwestiye herin li parkan bijîn." Lê wî berdevkî diyar kir ku erkê wan yê serekî ew e ku hevkariyê ji wan penaberan re dabîn bikin ku ti cîhekî wan tine û hinek pêdiviyan ji wan re misoger bikin, daku pak û paqij bimînin. Di bersiva wê pirsê de jî ku pirraniya wan penaberan ji kîjan welatî hatine, berdevkê Xaça Sor got: "Pirraniya wan xelkê Zimbabwe, Îraq û Afganistanê ne."

# Hevjîn in, hevkar in û hevparê malê ne


Wêne: Rûdaw
Dr. Hêvîn û Dr. Barî li klînîka xwe li Berlînê

**Armanc Egîd Nêrweyî**

Dr. Barî û hevjîna wî Dr. Hêvîn li Berlînê beriya du sal û nîv klînîka xwe ya diranan vekirin. Dr. Barî ji Qamişlo ye û 22 sal in doktorê diranan e û Dr. Hêvîn jî ji Amudê ye û 18 sal doktora diranan e. Derbarê nexweşên klînîka xwe, Dr. Barî dibêje ku pirraniya wan Alman in, lê gellek Kurd û ji neteweyên din jî hene. Ew û hevjîna xwe li klînîkê bi her kesî re bi almanî diaxivin, û dibêje: "Lê ku Kurd bên û bixwazin bi zimanê xwe biaxvîn, an jî dema ku ereb zimanê xwe bixwazin, çima na?"

Di klînîka wan de di heman demê de dikarin 3 nexweşan werbigrin, amûrên wan tev moder û serdemî ne. Laboratûvara wan jî heye, ew bi xwe materyal digirin û diranan çêdikin.

Dr. Barî endamê Komîteya Birêvebir a Doktorên Kurd li Almanyayê ye jî, herwiha li Amed û Dihokê beşdarî du Kongreyên Doktorên Mezopotamyayê bûye. Ew niha bi çêkirina têkiliyên di navbera doktorên Kurd li Kurdistanê û yên Almanyayê re mijûl e. Wek ku Dr. Hêvîn dibêje, herduyan di zanîngehê de hevdu naskirine û wiha wan deman tînê bîra xwe: "14 sal berê me biryara zewacê da, niha sê zarokên me hene. (Kazim 11, Maliyar 10, Mustefa 5 salî ) Her 3 zarokên me li Almanyayê çêbune û em bi wan re bi kurdî diaxivin."

Di dema axaftina bi me re, hin nexweş tên û diçin û ji Dr. Barî û Dr. Hêvîn yek bi wan re mijûl dibe, yek jî bi me re. Dr. Hêvîn derbarê jiyana li Almanyayê û zehmetî û avantajên wê de diyar dike ku pirr nexweşiyên xerîbiyê hene û got, "em ji welatê xwe, kes û karên xwe dûr in, 3 zarokên me hene, ew diçin dibistanê, bernameya me heye, em ji seet 8ê sibê ji mal derdikevin heya 6ê êvarê. Lê her sê roja yek ji me seat di 4ê de kar berdide û diçe malê xwarinê amade dike."

Dr. Hêvîn 3 caran serdana Rojavayê Kurdistanê kiriye û dixwaze vegere, lê dibêje: "ew xewna min e, rojekê bizanim ku ez li welatê xwe dijîm."

## YEK-KOM ji bo kampanyayê piştgiriya hemû saziyên kurdî dixwaze

# Parlementoyên eyaletan nasnameya kurdî nîqaş dikin

**Azad Dîcle**

Li Almanyayê, payîza sala borî, bi pêşengiya Federasyona Komeleyên Kurdan yên Almanyayê (YEK-KOM) Kampanya Nasnameya Kurdî hatibû destpê kirin û di vê çarçoveyê de nêzîkî 60 hezar îmze hatibûn civandin û bo Parlementoya Federal ya Berlînê hatibûn şandin. Piştî vê pêngavê, YEK-KOMê û çendîn saziyên din ên kurdî û yên demokratîk têkilî bi nûnerên partiyên siyasî yên eyaletan re danîn û xwestekên Kurdan pêşkêşî wan kiribûn. Serokê YEK-KOMê Yuksel Koç jî daxuyand ku parlementoyên her 16 eyaletên Almanyayê ragihandine ku mijar xistine rojeva xwe û got ew niha di kampanyayê de derbasî pêngava sêyemîn bûne. Koç got, "Kampan- yaya Nasnameya Kurdî ne tenê ya saziyekê ye, karê hemû saziyên kurdî ye û em ê ligel saziyên hemû parçeyên Kurdistanê bicivin û piştgiriya wan jî bistînin."

### Li Dusseldorfê pêngava sêyemîn

Federasyona Komeleyên Kurdan yên Almanyayê YEK-KOMê ji bo pejirandina nasnameya kurdî li Almanyayê sala borî kampanyayek li dar xistibû û hefta borî giha qunaxeke nû. Daxwaza naskirina nasnameya Kurdan, ku çav li rê bû di meha Îlona borî de li parlementoya Federal bê nîqaşkirin, 16 parlementoyên eyaletan xistin rojeva xwe. Hefta borî roja 8ê Nîsanê li bajarê Dusseldorfê saziyên ku kampanya birêvedibin di civîneke giştî de hatin cem hev û ji bo karkirina dema nû nîqaş kirin û gellek biryar girtin.

Saziyên ku tevlî civînê bûn ev in: YEK-KOM, Federasyona Karker û Koçberên Almanyayê (AGÎF), Federasyona Karkerên Tirkiyeyî yên Almanyayê (ATÎF), Komeleya Mafê Mirovan ya Almanya/Tirkiye (TUDAY) û Yekîtiya Xwendekarên Kurdistanê (YXK) û saziya jinan Cenî.

Serokê YEK-KOMê Yuksel Koç ji Rûdawê re ragihand ku ew di kampanyayê de gihane pêngava sêyemîn û derbarê pêngavê din de got, "Di meha Îlonê de me 60 hezar îmze civandin û şandin bo Parlementoya Federal a Berlînê. Paşê li 16 eyaletan bi nûnerên partiyan re, wek Die Linke, CDU-CSU, SPD û Partiya Keskan re em ketin nava têkiliyê û me daxwazen Kurdan bo wan ronî kirin û heman îmze dane wan jî. Niha jî di çarçoveya pêngava sêyemîn de em ê ligel hemû saziyên kurdî bicivin û di dema nîqaşkirina mijarê di parlementoyên eyaletan de em ê bi kesayet, sazî û girseya Kurdan re civînan li dar bixin." Koç destnîşan kir ku ji 16 parlementoyên eyaletan bersiv gihaye wan ku mijarê têxin rojeva xwe û nîqaş bikin.

**Biryarên pêngava sêyemîn:**

- *Di çarçoveya kampanyayê de li eyaletan komîte bên damezirandin û li herêman jî ev komîte kar bikin.*
- *Bi partiyên siyasî yên li parlementoyên eyaletan de hevdîtin pêk bînin û piştgirî ji wan bê xwestin.*
- *Ji bo hevdîtina Komîsyona Daxwaznameyan ya Parlementoya Almanyayê, ku wê di meha Îlonê de kom bibe, di çarçoveya amadekariyan de li gel nûnerên saziyan hewil bidin ku rojnamevan û rewşenbîr tevlî bibin.*
- *Di çarçoveya kampanyayê de bi armanca agahîdayînê civîn û çalakî bên lidarxistin.*
- *Di parlementoyên eyaletan de ji bo daxwaziyan komîsyon bên avakirin.*
- *Nameyên piştgirî û daxwazên kampanyayê bo DGB û sendikayên din re bên şandin.*

### "Nasnameya kurdî karê hemû Kurdan e"

Serokê YEK-KOMê Yuksel Koç diyar kir ku karê pejirandina nasnameya kurdî li Almanyayê ne tenê karê saziyekê ye û got, "Ev karekî netewî ye û beşdariya hemû saziyên Kurdan ji her çar perçeyan pêwîst e." Koç bi bîr xist ku nûnerê Tevgera Goran li Almanyayê ji serî de di kampanyayê de cîh girtine û got çendîn saziyên kurdî yên Rojavayê Kurdistanê jî di bin baskê blokê de tevlî kampanyayê bûne û derbarê beşdariya nûnerên partiyên Başûrê Kurdistanê jî Koç wiha axivî: "Me ligel nûnerên herdu partiyên Başûr têkilî danî û di demeke nêzîk de em ê li Berlînê ligel wan bicivin û piştgiriya wan jî bixwazin."

# Komeleyek Kurdî ya kultûrî û rewşenbîrî li Belçîkayê hat avakirin

» “Em dixwazin berevajî hemû saziyên din pratîkî û modern bixebitin”


Endam û rêvebirên Komeleya Nîgeh ya Kultûrî û Rewşenbîrî

Wêne: Rûdaw

**Azad Kurdî** Bruksel

Ji sala 2009ê ve bo avakirina saziyek wisa hewldan dihatin kirin, lê her car bi guman û bihaneya ku ew saziyek siyasî be, yan girêdayî partiyek siyasî kar bike û programek zelal nebûye, hikûmeta Belçîkayê izina karkirinê nedida wan. Lê di Sibata 2012ê de ji aliyê sharedariya bajarê Leuvan û li ser îsrara berdewam a çalakvanên Kurd destûr û derfeta karkirinê ji Komeleya Nîgeh ya Kultûrî û Rewşenbîrî re hat dayîn.

Ebdulsemed Ebdulcebar (29) yek ji wan kesan e ku berdewam di nav hewldanan de bûye ku saziyek wiha kultûrî û rewşenbîrî ava bikin, lê her car daxwaza wan hatibû redkirin. Rêveberê Peywendî û Karûbarê Derve yê Komeleya Nîgeh ku 11 sal in li Belçîkayê dijî, ji Rûdawê re diyar kir: “Salên berê, hikûmeta Belçîkayê, dema pêşkêşkirina program û projeya avakirina saziyê, wiha difikirîn ku saziyek siyasî, yan girêdayî partiyên siyasî be, lê vê carê programa me ecibandin û inza karkirinê li hemû Belçîkayê wek saziyek kultûrî û rewşenbîrî dan me.”

Li gor Ebdulsemed, komeleya Nîgeh serbixwe ye û ser bi ti aliyek siyasî nîne: “Endamên komeleyê dikarin xwedî fikr û ramanên siyasî ên taybet bin li derveyî saziyê, lê di nav komeleyê de divê hemû kes serbixwe û bêalî be.”

Navborî eşkere kir ku armanca wan ewe ku peywendiya dostanî ya navbera Kurd û Belçîkiyan de xurtir bikin û nasnameya nenaskirî ya gelê Kurd bi modern û başî bidin naskirin. Ew herwiha rexneyê digire ku Kurdan nekarîne bi awayekî baş nasname û çanda gelê xwe bidin naskirin û agahiyên civaka Ewropî derbarê jiyana Kurdan de ne zêde ye.


Wêne: Rûdaw

Nasik Nesîrzade

### “Komeleyên Leuvan bêtir ji bo partiyên xwe dixebitin”

Derbarê pêşketin û bandora sazî û komeleyên kurdî li Belçîkayê, Ebdulsemed da zanîn ku sazî û komeleyên bajarên Belçîkaye bêtir di çarçoveya partiyan de kar: “Di çendîn salên borî de me pêşketinek berçav a Kurdan nedîtiye. Sedem jî nebûna kadroyên xwedî şiyan û pêwîst li gor normên civaka Belçîkayê li dora saziyên kurdî bûye. Komeleyên kurdî bê proje bûne. Ji neteweyî bêtir, saziyên hizbî ne, ev yek ji bo Belçîkiyan ne balkêş e.”

**Bikaranîna hêza jinan di nav sazî û komeleyan de pirr giring e, lê rola jinan di nav komeleyên kurdî de qels û lawaz e.**

Li Bruksela paytexta Belçîkayê Enstîtuya Kurdî û Buroya Kurdî wek du saziyên sivîl û çandî ku serbixwe ne, gellek projeyên baş pêşkêş dikin, lê saziyên girêdayî partiyan bêtir di xizmeta partiyan de ne. Rêveberê Karûbarê Navxwe yê komeleyê Ebdulrezaq Mecîd (29) ji Rûdawê re got: “Me biryar wergirtiye ku kar û projeyên nû biafirînin ku bikarin bêtir bala civaka Belçîkî bikşînin ser çand, nasname û kultûra Kurdan. Armanca me ev e ku karên heta niha nehatine kirin, em rêve binin: Pêwendiyên civakî û bazirganî di navbera Herêma Kurdistanê û Belçîkayê de, çendîn xalên girêdayî çalakiyên kultûrî yên hevbeş di navbera Kurdan û Belçîkiyan de, vekirina navendên perwerdekirina zimanên Belçîkayê ji bo rûniştvanên Kurd ji aliyê mamosteyên Kurd ve.” Navborî got ku loma hikûmetê izin û piştgirî da wan, ji ber ku projeyên komeleya wan di xizmeta herdu aliyan de ne. Wek Ebdulrezaq diyar kir, komeleya wan bi van karên xwe dixwaze di warê întegrekirina Kurdan di civaka Belçîkî de bibe alîkar.

### “Me sond xwariye ku pratîka me ji gotinê bêtir be”

Di konferansa yekem a Komeleya Nîgeh de, endamên rêveberiyê sond xwarine ku kiryarên wan bêtir bin ji gotinê. Rêveberên komeleyê derbarê armanc û metodên karkirina saziyê ji Rûdawê re axivîn: “Me endamên rêveberiyê sond xwariye ku di pratîkê de aktîv bin, ne bi gotin.”

Li gor gotina rêveberên Komeleya Nîgeh, rayedarên Belçîkî li bajarê Leuvanê pêşwaziyek gelekî cuda ji 34 saziyên neteweyên din ku di nav de 3 komeleyên kurdî jî hene, li komeleya wan wan kirine û derbarê sedemên vê yekê diyar kirin: “Projeyên me bala wan kişandine ku di pratîkê de sûdê dighîne civaka kurdî û Belçîkî û herwiha hebûna Herêma Kurdistanê jî bi xwe garantiyek xurt dide pêwendiyan. Dema projeyên baş bên pêşkêşkirin, civaka Ewropî jî pêşwaziya germ dike.” Ew dixwazin geştên zanistî û kultûrî ji bo xwendekar û ciwanên Belçîkî û Kurdistanê pêk bînin, daku baştir hemû aliyên jiyana hev nas bikin.

### “Rol û beşdariya jinan di komeleyên Kurdî lawaz e”

Ji 7 endamên rêveberiya komeleyê 3 jê jin in û li gor nerîna rêveberên komeleyê, beşdariya jinan di hemû warên xebata wan de giring e. Nasik Nesîrzade ku ji Rojhilatê Kurdistanê ye û yek ji rêveberên saziyê ye got: “Bikaranîna hêza jinan di nav sazî û komeleyan de pirr giring e, lê rola jinan di nav komeleyên kurdî de qels û lawaz e, lê Komela Nîgeh balek taybet dide rol û beşdariya jinan. Me dest pê kiriye ku jinên Belçîkî jî tevlî saziyan bikin.” Nasik dibêje her Kurd û Belçîkiyek ku ramanên xwe yên siyasî, îdeolojîk û olî nexe nav karên komelê, dikare bibe endam û niha 60 endamên wan hene. Projeya wan heye ku şaxeyên komeleyê li pirraniya bajarên Belçîkayê ava bikin. Li gor rêvebirên komeleyê jî, her ku diçe hejmara endamên komeleya wan bêtir dibe.



### Xelatên şirovekarên werzişê hatin dayîn

## Peyamnêrê AKnewsê xelata baştirîn şîroveke wergirt

***Hewlêr (Rûdaw) -** Peyamnêrê werzişî yê AKnewsê, Erselan Ebudula, xelata baştirîn şirovekarê werzişî yê Herêma Kurdistanê wergirt. Yekitiya Lawên Demokrat a Kurdistanê di warê medyaya werzişî û futbolê de bo cara sêyemîn li Hewlêrê rapirsîn saz kir. Di encama rapirsînê de peyamnêrê werzişî yê AKnewsê, Erselan Ebdula, xelata baştirîn şirovekar wergirt. Erselan Ebdula derbarê vê xelatê de spasiya hemû aliyên ku deng dane wî kir û got, "Xelateke wiha dibe sedema wê ku ez baştir û germtir karê xwe bikim."*






# Di lîgê de butçeya herî kêm ya Dalkurdê ye

**Kizil:** *Ji bo vê sezonê pêdiviya me bi 500 hezar Euro heye*




**Rojan Surek** (22), Forvet e. Klûba jê hatî: Hammarby



**Tobias Johansson** (30), Nîvê sahê de dileyîze. Klûba jê hatî: Brage, Superattan



**Temesgen Berhane** (23), Forvet e. Klûba jê hatî: Vasteras, Superettan

**Swêd (Rûdaw) -** Sezona 2012yê ya lîga 1. a Bakur û Başûrê Swêdê di 14ê Nîsanê, roja şemiyê de dest pê dike. Tîma Kurdên Swêdê Dalkurd weke sala borî dîsa di Lîga 1. ya Bakur de cih digire. Li Swêdê lîga herî jor Alsvenskan e, lîga duyemîn Superettan e û lîga bin van herduyan jî weke Lîga 1. tê binavkirin û ji 14 tîmên bakur û ji 14 tîmên başûr, bi giştî ji 28 tîman pêk tê.

Serokê Klûba Dalkurdê Ramazan Kizil derbarê amadekariyên sezona nû de agahî dane Rûdawê. Kizil diyar kir ku Dalkurd di nava hemû tîmên profesyonel de xwediya butçeya herî kêm ê û destnîşan kir ku bo sezonê bi giştî pêdiviya wan bi 500 hezar Euro heye û got, "Me heta niha ji sponsorên xwe 400 hezar Euro peyda kirine, niha pêdiviya me bi 100 hezar Euro heye."

### Ji 24 leystikvanan 12 Kurd in

Li gor agahiyên ku serokê klûbê Kizil dane Rûdawê, Dalkurdê ji bo sezona 2012yê kadroya her du tîmên xwe nû kir. Kizil diyar kir ku bi giştî di herdu tîmên wan de 24 leystikvan hene ku 4 ji wan ji tîma jêr hatine. Kizil wiha axivî: "Ji 24 leystikvanan 12 Kurd in, yên din jî ji neteweyên cuda ne. Me hejmara leystikvanên profesyonel yên bi heqdest dileyîzin zêde kirine, lewma mesrefên me jî bilind bûne. Du leystikvanên me transferê derve bûn, me jî ji lîga Superetten 5 leystikvanên nû transfer kirin. Du heb ji wan Kurd in ku yek ji wan berê di tîma netewî ya Swêdê ya ciwanan de dileyîst. Me herwiha antrenorê xwe jî guhert û yekî Kurd û yekî Swêdî, yanî du antrenorên nû anîn."

### Butçeya dijberên me 3-4 car ji ya me zêdetir e

Kizil bibîr xist ku sala borî 5 sponsorên wan hebûn, lê 2 sponsorên Kurd xwe paşve kişandine û di şûna wan de şîrketeke Swêdî bûye sponsor. Kizil diyar kir ku ew hê jî li sponsorên nû digerin û axaftina xwe wiha dom kir: "Em bi hêza xwe dileyîzin û li gor dijberên xwe, derfetên me gellekî kêm in. Di nava hemû 28 tîman de butçeya herî kêm ya me ye. Butçeya gellek tîman 3-4 car ji ya me mezintir e." Kizil da zanîn ku ew ê hewldanên bo dîtina pere bidomînin û got, "Di meha Tîrmehê de festîvala muzîkê ya mezin li vir heye. Êm ê di wê festîvalê de xwarin û vexwarinê bifiroşin û nêzîka 40-60 hezar Euro pere bidest bixin."

### Dalkurdê Djurgardenê têk bir

Dalkurd wê maça xwe ya yekem roja 14ê Nîsanê ligel tîma Yûnanî ya bi navê Akropolîs li Stockholmê bileyîze. Heftiya borî, di çarçoveya maçên amadekariyê de, Dalkurd bi tîma lîga Superettenê Djurgardenê re leyîst û 3-2 bi ser ket. Sezona lîga futbola jinan jî di dawiya meha Nîsanê de dest pê dike û weke ku Ramazan Kizil daxuyand 22 keç hene û 4 ji wan Kurd, yên din jî Swêdî ne.

## Ciwanên Amedê bûn şampiyonê herêmê


Wêne: AK News

**Amed (Rûdaw) -** Tîma Basketbolê ya Şaredariya Baglarê di musabeqeyên li herêmê de bi ser ket û bû şampiyonê herêmê.

Musabeqeyên şampiyoniya bajarên Kurdan li Elezîzê pêk hat. Di musabeqeya ku ji 13 bajaran 13 tîmên basketbolê cîh girtin de, Tîma Basketbola Ciwanên Şaredariya Baglarê bi ser ket û bû şampiyona herêmê.

Tîma Basketbola Baglarê di musabeqeya dawî de bi 73-67 Tîma Dibistana Turgut Ozal a Meletiyê bir û navê xwe ji bo şampiyoniyê nivîsand. Bi vê serkeftinê tîma Baglarê li Tirkiyeyê di nava 8 tîmên herî baş de cîhê xwe girt.

Antrenorê Tîma Baglarê, Gokhan Yildirim, diyar kir ku ew di basketbolê de bûne marka û ji ber keda wan ji Şaredar Yuksel Baran û hemû rêveberiya şaredariyê re spasiyên xwe pêşkêş kir.

Azad Dîcle

Ew dawet, şahî û şevên Kurdan bi dengê kemançeya xwe dixemilînin. Ligel kemançeyê carinan def û zirneyê jî lêdixin û ji hemû deverên Kurdistanê stranên folklorîk distirên. Solîst û endamê Koma Torê, Fehmî Hezexî (34) ji Rûdawê re behsa karê xwe û koma xwe kir: "Malbata me bi kemançeyê tê naskirin. Em ji heft bavan pê ve wek kevneşopiyekê bê navber kemançeyê lêdixin."

Beriya sala 1996ê li devera Hezex û Midyadê gellek hunermendên herêmî hebûn ku di dawet û şahiyan de li kemançeyê dixistin. Di nava wan de yek ji yên herî naskirî Mihemedê Hezexî bû. Mihemedê Hezexî di destpêka salên 90î de tê Almanyayê û heman hunera xwe li vir jî dom dike. Ligel wî, kur, xwarzî û biraziyên wî jî hene. Mihemedê Hezexî û xizmên wî di sala 1996ê de li bajarê Giessenê li bin navê Koma Hezexê komekê dadimezirînin. Biraziyê Mihemedê Hezexî, Fehmî Hezexî wan rojên destpêkê bibîr anî û got, "Em 6-7 kes bûn, apek û çendîn birazî."

### 6 bira Koma Torê dadimezirînin

Nêzîka 7 salan bi hev re kar dikin, paşê hejmara wan zêde dibe û ji her derê jî bangî wan tê kirin ji bo dawet û şahiyan. Di sala 2003yê de komeke din jî derdikeve holê, Fehmî û pênc birayên xwe Koma Torê dadimezirînin. Paşê mala xwe bar dikin bajarê li navenda Almanya Lüdenscheidê. Fehmî Hezexî di sala 1994ê de hatiye Almanyayê, niha ligel 5 birayên xwe hem Koma Torê birêvedibe û hem jî ji bo debara malê di karekî din de dixebite. Ew dibêje, "Mixabin debara me ji komê nabe, em 6 malbat in û qezenca ji komê têra me nake." Fehmî Hezexî diyar dike ku ew ji şev, pîrozbahî û sahiyên netewî pere nastînin û got, "Mînak, em bi dil tevlî Newroza îsal ya Lüdenscheid bûn."


Wêne: Rûdaw

# "Em hunera heft bavan berdewam dikin"


Wêne: Rûdaw

Fehmî Hezexî (aliyê rastê) li şahiya Newroza 2012ê li Lüdenscheidê

### Ji seranserê Ewropa gazî wan dikin

Wek ku Fehmî Hezexî diyar dike ew ne tenê li bajarên Almanyayê diçin dawetan û dibêje, "Ji Holenda, Belçîka, Swêd, Fransa, Swîsre, Awistûrya, Tirkiye û Başûrê Kurdistanê jî gazî me dikin." Repertûwara Koma Torê jî dewlemend e; Fehmî Hezexî destnîşan dike ku ew ne tenê stranên folklorîk pêşkêş dikin, "Niha em ligel stranên folklorîk, stranen netewî û yên nûjen jî pêşkêş dikin." Derbarê gazîkirina ji her deverên Kurdistanê jî, Hezexî dibêje "sedemên wê hene, ji ber em ligel stranên herêma Torê, stranên ji Serhed, Amed, Botan, Qamişlo, Behdînan û heta ji Şengalê jî distirên." Hezexî çend stranên navdar yên koma xwe jî wiha rêzkirin: Nûrika Hemo, Sînemê, Zinarê, Keynê û Ciwanê.

### Albûma solo amade dike

Fehmî Hezexî di demên vala de bi amadekariya albûmê re mijûl dibe. Wî beriya 6-7 salan li ser navê Miradê Kinê albûmekî taybet derxist: "Miradê Kinê hunermendekî navdar bû, efsaneyê kemançeye bû, otorîte bû, wî stîleke nû da kemançeyê." Hezexî sala borî jî bi navê Yabo CDyek derxist û niha jî amadekariya albûmeke nû heta nîvî xilas kiriye. Gotin û muzîka hemû stranan Fehmî Hezexî bi xwe amade dike. Hezexî li sponsorekî anjî li saziyekê digere ku alîkariyê bidinê bo derxistina albumê û dibêje "hemû stran min bi xwe amade kirine, di her albûmekê de ez stranên nû diceribînim. Eger ez pirsgirêka aborî çareser bikim, hewl didim albûma xwe li Kurdistanê belav bikim."

### Bav kurên xwe fêrî kemançeyê dikin

Di dawiya axaftina xwe de Hezexî behsa malbata xwe dike: "Em li herêma Hezexê weke Mala Eliyê Silto tên nasîn, niha jî ji me re Mala Evdê tê gotin." Hezexî diyar dike ku di malbata wan de hemû mêr bi muzîkê re mijûl in û yan def û zirneyê, yan kemançeyê, yan orgê dikarin lêxin, yan jî dikarin bistirên. Û diyar dike ku ev kevneşopî ji bav derbasî kur dibe. "Ez ji bavê xwe fêrî kemançeyê bûm û bavê min jî ji bapîrê xwe. Heta bigihijê 7 bapîrên min ev dom dike."

## Hewramî û kurmancî jî li xwe digire

Nîna Cenal ku li Awistraliyayê dimîne diyar kir ku ew ê van deman vegerê Kurdistanê û albûmeke nû biweşîne.

Albûma nû ya Nîna ku ji 8 stranan pêk tê, hê nav jê re nehatiye danîn. Nîna got "Ez hê li ser albûmê dixebitim, bi arîkariya Vin Production tê weşandin. Ez ê bo vê mebestê di demekê nêzîk de vegerim Kurdistanê, daku xebatên albûmê biqedînim û biweşînim." Çar stranên vê albûmê bi zaravayên hewramî û kurmancî ne. Nîna got: "bêtiriya xebata vê albûma min bi dawî bûne, lê min hê nav nehilbijartiye."



## Karwan Kamil 'Sebûrî dil' dibêje

Hunermend Karwan Kamil niha mijûlî klîbkirina stranekê ye. Navê stranê 'Sebûrî dil'e. Karwan Kamil di vê derbarê de got: "piştî belavbûna nûtirîn albûma min ku ji 11 stranan pêk hatibû, ez niha mijûlî bidawîanîna karên klîbkirina yek ji van stranan im ku bi navê 'Sebûrî dil' e û ev stran bi soranî ye." Klîba wê jî ji aliyê şîrketa NV. Production tê kişandin.

## Çopî dibêje 'çopî'

Hunermend Çopî Fetah niha bi strana xwe ya bi navê "Çopî" re mijûl e.

Awazdanerê strana çopî, Aryos Heme Seîd, got "ez niha mijûlê karekê hunerî me bo hunermend Çopî. Strana bi navê "Çopî" ji rîtma lezgîn e." Herwiha got "ez hêvîdarim ku bikarim vê stranê bi şêweyekî baş berhem bînim, daku bibe xizmeteke baş bo hunera kurdî."


Wêne: Rûdaw


Gérard Chaliand

## Nivîskarê fransî yê xwedî du pirtûkên li ser Kurdan, Gérard Chaliand:

# *Li Herêma Kurdistanê gendelî heye lê vejandina aborî jî heye*

**Barzan Mihemed – Hewlêr**

Ji bo nasandina herdu pirtûkên wî yên derbarê gelê Kurd de, roja 04.04.2012ê ji aliyê dezgeha "Aras a çap û belavkirina pirtûkan" panelek ji nivîskarê fransî yê navdar Gérard Chaliand re hat sazkirin. Herdu pirtûken navborî ji aliyê Ebdilselam Neqişbendî bo zimanê erebî hatine wergerand.

Gérard Chaliand nivîskarekî navdar ê fransî-ermenî ye û pisporê rewş û dîroka gelê Kurd e. Wî li ser Kurdan du pirtûkên bi navên 'Gelekî bê welat' û 'Kurd û Kurdistan' bi zimanê fransî nivîsandine û pirtûk bi ingilîzî, spanî, almanî, farisî û erebî li gellek welatan hatine belavkirin. Nivîskar di pirtûkên xwe de qala wê yekê dike ku pêşî ti ezmûneke Kurdan ya birêvebirina dewletê nebû: "Carekê Kamîran Bedirxan ji min re got berê ramana me nîvê wê Osmanî û nîvê wê yê din jî Îslamî bû, ku vê yekê hizra netewî lawaz kir."

Nivîskarê fransî Gérard Chaliand qala tecrûbeya Kurdistanê piştî hilweşandina rejîma berê ya Îraqê dike û dibêje: "Her çiqasî gendelî li Herêma Kurdistanê heye, lê vejandineke aborî ya baş jî heye, vejîna aborî li her welatekî ku hebe, ew welat pêş dikeve." Chaliand ji Rûdawê re got: "Pêwist e Kurd di vê rewşê de şiyar bin û ji bîr nekin ku pêwist e hewl bidin pirsgirêkên xwe yên navxweyî çareser bikin û xwe ji sibe re amade bikin."

Navborî qala kêmbûna dostên Kurdan dike û dibêje: "Berê hevrêyên Kurdan kêm bûn, lê niha rewş baştir e. Ji ber ku Malikî hevrikiyê bi Sunniyên Îraqê re dike, pêdiviya wî bi Kurdan heye. Û Tirkiye jî fêdeya aborî ji Herêma Kurdistanê dibîne, ji ber ku derveşandina petrola Îraqê bo derve bi rêya Herêma Kurdistanê di ser Tirkiyeyê re pêk tê."

Ebdilselam Neqişbendî ku pirtûkên Gérard Chaliand wergerandine zimanê erebî, vî nivîskarê fransî wek dostê gelê Kurd dibîne û dibêje: "Gérard Chaliand birayê Kurdan e, wî karekî zêde kiriye bo nasandina Kurdan." Neqişbendî daxwaz kir ku peykerên herdu kesayetiyên navdar ên fransî Daniel Mitterrand û Gérard Chaliand li Herêma Kurdistanê bên çêkirin.








Wêne: Rûdaw

Nezend Begîxanî (li destê çepê)

## Helbestvaneke Kurd ji nava 42 helbestvanên Fransî de hat xelat kirin

# Begîxanî xelata 'Feminine Simone Landry' wergirt

**Parîs (Rûdaw) -** Li Fransa nivîskar û helbestvana Kurd Nezend Begîxanî li ser çend tekstên helbestê xelata 'Feminine Simone Landry' stand. Navborî vê xelatê girîng dibîne û dibêje, "Ji ber ku li welatê me jinên Kurd ên serbixwe û azad ti carî hurmet û rêza wan nayê girtin."

Ev duyemîn xelata Ewropî ye ji Nezend Begîxanê re tê dayîn, di sala 2000î de jî li Brîtanya xelata Emma Humphreys jê re hatibû dayîn ji ber hewlên wê yên dijî kuştin û tawanên şerefparêziyê. Begîxanî ji ber çar helbestên dîwana xwe ya helbestan a bi navê 'Doh a sibe' ev xelat wergirt.

### "Rêz û hurmetgirtina li xebata min e"

Nezend Begîxanî derbarê wergirtina vê xelata nû ku li Parîsê di 8ê Adarê de jê re hat dayîn, dibêje "bi nêrîna min standina xelatê li derveyî sembola ku xelat li xwe digire, qet ne girîng e. Xelatdayîn tê wateya rêz û hurmetgirtina li xebat û berhema kesê xelatkirî."

Begîxanê ev xelat gelekî girîng wesif kir û got "ev xelat bo min weke jineke Kurd gellekî girîng e, ji ber ku li welatê me jina Kurd a serbixwe û azad ti carî rê û hurmeta wê nayê girtin. Heta hin kes hene di nava Kurdan de kerba wan ji te vedibe û bo reşkirina van jinên Kurdên serbixwe, cesûr û azad ku bi kar û berhemên xwe îsbata xwe kirine, xebat dikin."

### Sernivîskara Le Monde Dîplomatîque ya kurdî ye

Xelata Helbesta Jinan a Simone Landry, ev deh sal in di roja 8ê Adarê de ji baştirîn helbeştavana salê li Fransa re tê dayîn ku îsal pêşkêşî helbestvana Kurd Nezend Begîxanî kirin. Ev xelat ji hinek dirav pêktê, lê Nezend dibêje "ev pare bo min qet ne girîng e. Rêzgirtin û hêjayî dîtina berhemên min ên helbestê mezintirîn sermaye bû ji min re."

Nezend Begîxanî heta niha pênc dîwanên helbestê bi kurdî û dîwanek jî bi îngilîzî weşandine. Navborî sernivîskara çapa kurdî ya rojnameya Le Mond Dîplomatîque ye ku ji aliyê Şîrketa Rûdaw derdikeve. Ew herwiha keseke akademîk e û li beşa Gender a Zanîngeha Brîstol kar dike.

### Li Brîtanyayê jî xelat wergirt

Nezend Begîxanî di sala 2000î de bo kar û çalakiyên xwe yên dijî kuştin û tawanên ser şerefê xelata Emma Humphreys a Brîtanî stand.

Nezend Begîxanî ku li bajarê Koyê di nava malbateke Pêşmergeyan de mezin bûye, herwiha du birayên wê ji aliyê rejîma Baas hatine kuştin, di çend salên borî de derbarê rewşa jinan li Kurdistanê bi alîkariya Hikûmeta Herêma Kurdistanê xebata lêkolîneke dirêj a akademîk birêvebir.

Begîxanî dibêje wê pêşbînî kiribû ku xelata 'Feminine Simone Landry' werbigire, "ji ber ku li welatekî weke Fransa tekst xwe îsbat dike û bi şêweyekî bêalî tê nirxandin, lê ne weke Kurdistanê ku nirxê tekstê negirîng e li cem xwendevan û rewşenbîrê Kurd. Lê ev girîng e ka tu girêdayî kîjan grûb, bajar, navçe, rêxistin û partiyê yî."

### Bo serkeftina jinê alîkariya zilam pêwîst e

Nezend Begîxanî di vê baweriyê de ye ku di nava Kurdên diyasporayê de jinên helbestvanên gellek baş hene û dibêje, "lê ji ber bê şansî û mesela serdestiya mêran û nenaskirina berhemên jinan, ev deng hatine piştgut xistin. Ji bo ku jin cihê xwe di vê rewşê de bike, divê ew girêdayî zilamekî be ku ew zilam di nava kanalên medyayê, grûb û heyetên gotûbêjan de xwedî desthilat be. Vî zilamî jî bo afirandinê jinê nêrîneke romantîk heye û di rastî de ew tenê tiştekî ji vê jinê dixwaze: seks."

## Şêx Ebas Mihemedawî beriya heftiyekê:
# *Divê di nava heftiyekê de Kurd ji Bexdayê derkevin!*



» **Axaftinên min peyamek bûn bo birêz Barzanî**

» **Saziyên ragihandinê ev mesele mezin kirin**

» **Berê, dema ez reviyam, min hawara xwe gihand Kurdistanê**

## Şêx Ebas Mihemedawî bo Rûdawê jî got:
# *Kurd di dilê me de gellekî hezkirî ne!*

Di çend rojên borî de daxuyaniyek û zincîrek gotinên Sekreterê Giştî yê Hevbendiya Lawên Xîretmend yên Îraqê, Ebas Mihemedawî, derbarê derxistina Kurdan ji navçeyên erebî, şepêleke fereh a nerazîbûn û reaksyonan li pey xwe anîn. Çi ji aliyê Kurdan ve ku doza girtina vî dikin, bi tometa dehifdana wî bo karên terorîstî, çi jî li ser astê aliyên erebî jî ku ev gefên Mihemedawî protesto kirin û hinekan jî xwe jê berî kir û gotin ti bingeheke girseyî ya Mihemedawî tine ye. Ji bo ku ji nêzîk ve boçûna Şêx Mihemedawî di vê derbarê de bizane, Rûdawê ev hevpeyvîna bi telefonê ligel wî saz kir.

**Rûdaw: We doza wê yekê kiriye ku Kurd di mawê yek heftiyê de ji Bexdayê û bajarên din ên erebî derkevin û tenê bi vîze rêya ketina hundirê van bajaran ji wan re bê dayîn. Gelo sedema vê daxuyaniya agirîn çi ye?**

**Mihemedawî:** Sedema vê ev hemû daxuyanî û helwest in ku em dibînin. Herwiha mijara Tariq Haşimî û veşartina tawanên wî û neteslîmkirina wî bo hikûmeta navendî. Herêma Kurdistanê girêdayî hikûmeta navendî ye, lê dema serokwezîr, desthilata dadwerî û wezîrê hundir doza tometbarekî kirin, em rastî şokeke mezin hatin ku me dît birayên me yên li Herêma Kurdistanê û bi taybetî Mesûd Barzanî razî nebûn û gotin exlaq û xîreta Kurdan nahêlê ku em tometbarekî bidin destê hikûmeta Îraqê. Û ev hemû xelkê bêtawan ku hatine kuştin û îro kesûkarên wan doza sizadayînê dikin? Ji min re seyr tê ku birêz Mesûd Barzanî wî dihebîne û parastina wî dike. Ji bilî vê jî, mixabin di vê dema borî de ku min serdana Hewlêrê kir û cilên erebî lixwe kiribûn, ez li deriyê bajêr rastî astengiyên zêde hatim û nehiştin ez bikevim hundirê Herêma Kurdistanê. Ew wisa ligel Ereban tevdigerin, tu dibêjî qey tiştekî gemarî û nehezkirî ne. Lê li Bexdayê û navçeyên din ên Îraqê tam terzî vê ligel Kurdan tevdigerin û ew bi şêweyekî azad tên û diçin.

**Ango ev daxuyaniyên we yên niha reaksyoneke li himber vê tevgera ligel we hatî kirin?**

Ev sedemeke.

**Lê çima we bi vî şêweyê tund doza derxistina hemû Kurdan ji bajarê Bexdayê kir?**

Me ev gotin bi şêweyekî qutkirî nekiriye ku divê hemû Kurd bên veguhestin. Me gotiye bila biçin Herêma Kurdistanê. Ya duyem jî bo wê yekê ye, daku hevwelatiyên normal ên Îraqê jî bizanin ku dema ew diçin Herêma Kurdistanê divê vîzeya wan hebe û yekî Kurd bibe kefîlê wan, wê demê wê rê jêre bê dayîn ku bikevin hundir. Lê Kurd dikarin bêyî pirsgirêk bikevin her parêzgeheke Îraqê. Herwiha heyam heyam em dibihîsin ku berpirsên Kurd behsa cudabûna ji Îraqê dikin. Me xwest em peyamekê bidin Herêma Kurdistanê ku gelê birayên ezîz ên Kurd, hûn Îraqî ne û em jî Îraqî ne. Me çendîn carên din jî gotiye eger Kurd ji Îraqê cuda bibin, her weke serî ji laş cuda dibe. Lê mixabin em her car reaksyonên tund dibînin, bi taybetî vê dawiyê ku Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî êrîş û daxuyaniyên agirîn avêtin. Ev hemû tiştane reaksyonan li cem gelê Ereb ê Îraqê çêdikin.

**Ev xwesteka we Serokkomar jî li xwe digire, bi sedema ku ew jî Kurd e?**

Nexêr, birêz serokkomarê Îraqê li derveyî vê meselê ye, ji ber ku heta niha me ji bilî gotin û karên baş tiştekî din jê nedîtiye. Me nedît rojekê serokkomar behsa dabeşkirina Îraqê bike, me nedîtiye ew alîgiriyê dike, me nebihîstiye ku çûye welatekê cîran û bavêje Îraqê. Lê berevajî vê yekê, serok Mam Celal Îraqiyekî rast e û deriyê ewlehiya hemû Îraqê ye.

**We çima navê xwe kirine Bedir9?**

Bedir 9, berî nêzîkî 9 mehan avabû û ji me cuda bûn. Piştî demekê ez rastî şokê hatim ku min bihîst yek xwe bi nave Ebû Ebdilla dide nasandin, lê di rastî de hebûna wî tune bû.

**Gelo hêzeke we ya çekdarî heye?**

Nexêr, niha ti hêz û betalyoneke me ya çekdarî tune.

**Nexwe kî piştevaniya we dike?**

Em piştevaniya ti aliyan qebûl nakin. Em Îraqî ne û Hevbendiya me pêkhatiye ji yekgirtina komeke rêxistinên civaka sivîl, hin rêxistinên siyasî û em bi xwe ji bêrîka xwe arîkariya darayî didin vê hevbendiyê.

**Lê ji bo ku hûn gefên xwe cîbicî bikin û Kurdan derbikin, divê çekên we hebin?**

Ez dixwazim careke din bêjim ku Kurd beşek in ji me û cudabûna wan weke wê yekê ye ku serî ji laş bê cuda kirin. Kurd birayên me ne, ji me ne, Îraqî ne û ev çend sedsal in em bi hev re dijîn. Ez bi xwe yek ji wan kesanim ku rojekê reviyame û min hawara xwe gihandiye Kurdistanê û wê ez hembêz kirim. Ez îro naxwazim tiştekî xirab himberî wan pêk bînim.

**Hûn kengî li Kurdistanê bûn?**

Ez di salên heştêyên sedsala borî li navçeya Hewlêrê bûm, paşî ji wir çûme Sûriyê û piştre çûme çend welatên din. Loma mebesta me ji van daxuyaniyan ev bû ku bêjin 'birêz Mesûd Barzanî, tu jî divê deriyê ewlehiyê bî weke serok Mam Celal. Binêrin ev çawa parastina biratiyê dike û aliyên siyasî li hev dicivîne, daku wan aşt bike, ew karên xirab nake û daxuyaniyên azirandinê nade'.

**Dibêjin hûn nêzîkî Nûrî Malikî ne. Rast e?**

Ez ne nêzîkî ti kesî me û dijî vê yekê me. Me tiştekî zêde ji Malikî nedîtiye ji bilî wê lihevhatina ku bûye sedema derketina dagîrkeran ji Îraqê. Ev xebateke baş û serketî bû, herwiha di sazkirina Kongreya Serokatiyên Erebî de jî serketî bû. Bi rastî ew di jiholêrakirina alîgirîkirin û grûpkariyê de jî serketî bû. Ji xeynî van karan, me serketineke zêde ji Malikî ne dîtiye.

**Cara dawî we kengî Malikî dît?**

Min Malikî tenê di televizyonê de dîtiye.

**Eger berpirsên Kurd guh nedan banga we û ji Bexdayê dernekeftin, wê çi bê serê wan?**

Min berê jî got, ev tenê peyamek bû bo birayê min ê birêz Mesûd Barzanî ku divê ew bi rastî Îraqî be.

**Lê eger ew berdewam bû li ser helwestên xwe derbarê dijberîkirina tekaliya li Îraqê û derfetnedana bo mayîna pirsgirêkan?**

Ez piştrast im, bi anehiya Xweda, Barzanî ku endamê hozeke navdar e, wê rawestiyayî nemîne eger gelê Îraqê rastî nexweşiyekê hat, ji ber ewê beramber xweda berpirsyar be.

**Lê piştî şepêleke reaksyonên Kurdan himber daxuyaniyên we yên berê, we careke din bi daxuyaniyeke din pêdagîri ser axaftinên xwe yên berê kir û we got nabe ku Kurd li navçeyên Ereban bimînin?**

Na, hûn jî dizanin ku saziyên ragihandinê hin caran tiştan mezintir dikin. Carnan yek gotinekê dibêjî, çarqasî zêde dikin. Li televizyonan binêrin, hin ji wan nerm in û tiştekî ji van daxuyaniyan naweşînin. Lê sê-çar televizyon jî hene ev tişt gellekî mezin kirine, mîna ku dijminatiyeke bi hezaran salî di navbera Kurd û Ereban de hebe.

**Hûn bawer dikin ku êrîşbirina ser Kurdan û bi taybetî jî berpirsên Kurd ên li Bexdayê wê şerê netewî di navbera Kurd û Ereban de çêke?**

Na, ez tiştekî wisa dûr dibînim û bo zanîna we bêtiriya dostên min ên Bexdayê Kurd in.

**Li Kurdistanê niha behsekî germ heye derbarê damezrandina dewleta kurdî, nerîna we çi ye derbarê vê mijarê de?**

Em ne dijî hebûna dewleteke kurdî ne. Min dema got ku ev mîna wê yekê ye ku serî ji laş bê cudakirin, mebesta min ev bû ku Kurd di dilê me de gellekî hezkirî û birêz in. Loma zore em vê fikrê qebûl bikin ku rojekê em û Kurd di du dewletên cuda de bijîn û beşeke mezin a dost û hezkiriyên xwe bi vî şêweyî ji dest bidin.

**Lê ku Kurd bi îsrar bin li ser cudanê, hûnê qebûl bikin?**

Ez yekemîn kes im ku dijî cudabûnê radiwestim, lê eger ev di berjewendiya birayên Kurd de be û çavê wan ser vê yekê be ku hemû birayên Kurd li Sûrî, Tirkiye û Îranê di dewleteke de bicivin û garantiyeke navnetewî hebe ku kes destê xwe dirêjî wan neke, ji ber ku bi rastî ez ditirsim ku dewleteke weke Îranê bêdeng nemîne. Îran û Tirkiye ji niha ve, ku hêşta Kurdistan beşekî Îraqê ye, rojane wê bombebaran dikin.

***Hevpeyvîn: Hêvîdar Ehmed***

# Sermayedarên Kurdistanê berê xwe dane zêr û almasan

Hîvîdar Ehmed

Bi rêya herdu firokexaneyên Hewlêr û Silêmaniyê zêr tên Herêma Kurdistan û Îraqê û bac û gumrikeke kêm li ser zêr tê standin.

Sermayedarên Herêma Kurdistanê niha diravê xwe dikin zêr û hildigirin. Cîgirê Serokê Sendîka Zêringirên Kurdistanê dibêje "sermayedar heye bêtirî 100 kîlo zêr kirrîne." Sermayedarên Kurdistanê ligel zêr herwiha almasê jî dikirrin.



### Bazara zêrê ji Tirkiyeyê bêtir e

Cîgirê Serokê Sendîka Zêringirên Kurdistanê dibêje "li ti welatên dinyayê weke Herêma Kurdistanê baca zêr kêm nîne. Niha li Firokexaneyên Hewlêr û Silêmaniyê bo her kîloyeke zêr 25 hezar Dînar (20 Dolar), herwiha bi 15 hezar Dînaran jî tê kontrol kirin. Lê li firokexaneyên din baca yek kîloya zêr 260 hezar û kontrola wê jî 220 hezar Dînar e."

Seyid Bekir Berzincî dibêje berê ji sedî 80 zêrê Herêma Kurdistanê ji Dubai dihat. Lê niha nîvê zêrê Herêma Kurdistanê ji Tirkiyeyê tê û nîva din ji Dubai. Vî herwiha got "niha zêrî Tirkiyeyê gellek xweşik e û çavê xelkê jî li ser e, loma bazarên me ji zêrê Tirkiyeyê tije bûne."

### Ji sedî 20 zêrê Kurdistanê bûk dikirrin

Zêr, girîngiyeke xwe ya taybet cem jinan heye bi taybetî jî jinên Kurd ku gelekê jê hez dikin. Li Herêma Kurdistanê girêbesta zewaca jinan li ser zêr tê çêkirin.

Rêvebirê Kontrola Corê Maden û Zêr li Herêma Kurdistanê, Bekir Ezîz diyar kir ku rêjeyeke kêm a firotina zêr li Herêma Kurdistanê bo bûkan e û got, "Ji sedî 20 zêrê Herêma Kurdistanê ji aliyê bûkan tê kirrîn, rêjeya ji sedî 80 jî ji aliyê xelkê tê kirrîn ku diravê xwe yê zêde pê didin û hildigirin."

Amîne Elî (61) di nava bazara zêringiran li bajarê Hewlêrê li dukanekê doza Lîreya Reşadî dikir. Amîne got "dema ez zewicîm min doza 100 Misqalên zêr kir. Niha jî her pereyê ku dikeve destê min ez didim bi zêr. Zêr sermayeyeke gellek baş e û herdema pêwîstiya mirov pê hebe, mirov dikare bifiroşe."

### Li Hewlêr û Duhok eyar 21, li Silêmaniyê eyar 18

Li Herêma Kurdistanê niha 6 corên eyarên zêr hene, ew jî ev in: 9, 12, 14, 18, 21, 22. Lê bikaranîna eyarê zêr ji aliyê jinan li Parêzgehên Herêma Kurdistanê cuda ye.

Seyid Bekir ku 26 sal in li bajarê Hewlêrê karê zêringiriyê dike, dibêje "ji ber ku bêtiriya kesên dewlemend li Hewlêr û Duhokê ne ew tenê zêrên eyar 21 dikirrin. Lê li Silêmanî û Kerkûkê hem ji Îranê nêzîk in û hem jî weke du parêzgehên din nedewlemend in. Loma herî zêde zêrê eyar 18 dikirrin."

Li gor amarên cem Seyid Bekir rojane li bazarê zêringirên Hewlêrê bêtirî 10 kîlo zêr tên firotin. Seyid Bekir herwiha got "li Herêma Kurdistanê niha ji her demê bêtir xwesteka ser zêr heye. Berê bazara zêr li Herêma Kurdstanê ser jinan bû, lê niha ev bûye bazarekî navnetewî û xelkên bajarên din ên Îraqê jî tên ji Herêma Kurdistanê zêr dikirrin."

## » Firoşkarê zêr û almasan, Luqman Ezîz:
## *Li Hewlêrê dewlemendekî bo jina xwe bi 3 milyon û nîv Dolaran almas kirriye*



### "Sermayedar heye 100 kîlo zêr kirrîne"

Ji ber ku li Herêma Kurdistanê hişyariya aborî li cem sermayedarên Kurd berbi bilindbûnê diçe, niha ew jî li gor rewşa rojê ligel diravê xwe tevdigerin. Wan jî weke bêtiriya sermayedarên cîhanê berê xwe dane kirrîna zêr. Seyid Bekir dibêje "niha sermayedarê Kurd ku pereyê wî zêdebin rasterast dide bi zêr. Li vê Hewlêrê sermayedar heye bêtirî 100 kîlo zêr kirrîne."

Li gor amara Rêveberiya Kontrola Corê Maden û Zêr li Herêma Kurdistanê, sala borî bêtirî 55 hezar kîlo zêr hatine hundirê Herêma Kurdistanê. Her li gor vê amarê bêtiriya vê zêrî çûye Silêmaniyê ku 35 hezar kîlo bûn, 18 hezar û 500 kîlo jî hatine Hewlêr û kêmtirîn zêr jî çûye Duhokê ku 1 hezar û 200 kîlo bûn.

Rêvebirê Kontrola Corê Madenan, Bekir Ezîz Bekir amaje da wê yekê ku li Kurdistanê kargeha çêkirina zêr tune û salane diravekê mezin didin bi zêr. "Bo mînak tenê sala borî ku me 50 hezar kîloyên zêr kirrîn, me 100 milyon Dolar zêde dane, ji ber ku me bo heqdestê yek grama zêr 2 Dolar dane."

### Amerîka pirsiye: Kurd çima ewqas zêr dikirrin?

Cîgirê Serokê Giştî yê Sendîka Zêringiran, Seyid Bekir Berzincî got "Amerîka ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê pirs kiriye ka ev hemû zêrên tê Herêma Kurdistanê çi lê tê, gelo ev pêwîstiya bazarê ye, yan çi lê dikin? Me jî bo wan ronî kir ku sê pişkên ev zêrên tê Herêma Kurdistanê diçe bajarên Îraqê."

Lê Bekir Ezîz derbarê vê pirsa û daxwaza Amerîka got, "Li Herêma Kurdistanê sîstemeke xurt a bankeyan tune ku xelk diravê xwe deyne bankeyan, loma hin ji wan diravên xwe didin bi zêr, ji ber ku hilgirtina zêr hesantir e ji dirav."

Li gor amara Rêvebiriya Kontrola Corê Maden û Zêr, li her sê parêzgehên Herêma Kurdistanê 1359 zêringer hene: li Hewlêr 454, li Silêmaniyê 510 û li Duhokê jî 395 zêringir hene.

### Li Hewlêr almas bêtir tê firotin

Niha ji bilî zêr, bi taybetî li bajarê Hewlêrê bazara almasê jî germ e. Luqman Ezîz ji bilî ku zêringir e ew herwiha almasê jî difiroşe û dibêje "Almasê Kurdistanê ji Dubai û Bexda tê." Lê Luqman amaje da wê yekê ku ji ber ne pisporiya xelkê di almasê de carna rastî pirsgirêkan tên. "Xelkê me pisporiya wan ser almasê tune, hin hene xwe dike bazirgan û hin moriyan bi diravekî gellek giran difiroşe bi navê almasê, lê piştre derdikeve ku ne almas e."

Luqman ku gostîleke almas bi buhayê 30 hezar Dolaran di tiliya wî de bû, dibêje niha tevî bazara zêr, herwiha bazara almasê jî germ e: "Niha li Hewlêrê hin malbat hene dema tên bo kirrîna nîşaniya bûkê, şerm dikin eger du gostîlên almas jî ligel zêr nekirrin." Wî herwiha got "dewlemend heye buhayê 3 milyon û 500 hezar Dolar almas bo hevjîna xwe kirriye."

### Bêtirî almas li Silêmanî û Duhok tê firotin

Çend rengên almasê xwe hene ku ji wan rengê sor û ev girantirîn cor e, herwiha rengê asimanî, lîmonî û spî jî hene. Niha bazara wî germ e, ji ber ku buhayê wî erzantir e ji corên din. Pîvana almasê jî qîrat e ku her pênc qîrat dibin yek gram.

Luqman behsa buhayê kevirê Almasî bi qîrata kir û got "yek qîrata rengê sor bi nîv milyon Dolar e, lê yek qîrata rengê spî bi 5 hezar Dolar e. Almas li Hewlêr bêtirî Silêmanî û Duhok tê firotin."

# "Temenê min tenê 3 roj bûn, gava li pismamê xwe hatim mehrkirin"

» Çalakvaneke mafê jiyan berdana wan keçên bêşans ji xwe re kiriye armanc û wiha bûye hêviya bi hezarên keçên ciwan.


Îsal di hundirê du heyvan de 95 keç hatine azadkirin

**Sengeser (Rûdaw) –** Mihemed Ebdulla wek wekîlê kurê xwe li rêûresma telaqdana wê keçê rûniştibû ku li ser dergûşê li kurê wî hatibû mehrkirin. Lê di navê re sal derbas bûn, kurê Mihemed mezin bû, çû Ewropa û razî bû ku wê keçê berdê. Lewma Mihemed Ebdulla got: "Bi wekaleta kurê xwe gerdena vê keçê azad dikim, dikare her niha bi kesekî din re bizewice."

Careke din bi serpereştiya çalakvaneke bajarokê Sengeser roja 4ê Nîsanê 40 keçên din yên vê deverê, ku li ser dergûşê yan di zaroktiyê de hatine mehrkirin, hatin azadkirin û telaqa xwe ji wan kesên ku li wan hatibûn mehrkirin wergirtin.

### Di hundirê du heyvan de du kampanya

Fewziye Mela Nebî (34), ku kadroyeke komîteya YNKê li Sengeser e, ji bo berdana keçên ku hê zarok hatine mehrkirin, di hundirê du mehên borî de ev kampanya duyemîn e ku organize dike. Cara pêşî 40 keç dabûn berdan, yên ku vê carê ketin ber kampanyayê temenê wan di navbera 10-15 salan de bû. Serkewt Brahîm (15) jî dev ji wê keçê berda ku di zaroktiyê de lê hatibû mehrkirin. Serkewt got: "Di zaroktiyê de û dûr ji vîna min ev keç li min hatibû mehrkirin, lê niha şiyar bûme û fêm dikim êşa zewacên wiha çawa ye, lewma min dev jê berda."

Sara (17) jî zêde dixwaze ji rewşa girêdana xwe ya di zaroktiyê de azad bibe. Êw hê zarok bû gava bê vîna xwe li pismamê xwe hat mehrkirin: "Dibêjin temenê min tenê 3 roj bûn, gava li pismamê xwe hatim mehkirin. Li hemberî vê yekê jî xwişkeke pismamê min bûye jina apekî min, wÎ apê min jî berê keçeke xwe daye bavê min." Çîroka Sara weke çîroka bi sedan keçên din yên Kurdistanê ye ku xewna azadbûna xwe dibînin. Hê navê sed keçên din jî yên devera Pişder li cem Fewziye Mele Nabî hene, ku hê zarok bûn dema ku hatin mehrkirin.

Fewziye, ku berê bi xwe yek ji goriyên vê kevneşopiya civakî bû, dibêje: "Ji azadkirina keçên ku hê zarok hatine mehrkirin nabetilim û heya dawî lê neyê nasekinim. Jin û keçên me berê wek materyalekê hatine dîtin, ji bo çareserkirina pirsgirêkên di navbera malbat û êlan de."

Karê Fewziye bala xelkê deverê kişandiye û bandor li ser kêmbûna van diyardeyan kiriye. Navborî got: "Piştî ku min telaqa 40 keçan ji wan kesên ku di zaroktiyê de li wan hatibûn mehrkirin wergirt, dûre 15 ciwanan destgirtiyên xwe berdan."

### Hêro Îbrahîm Ehmed alîkariya kampanyayê kir

Berdana keçên mehrkirî li Pişder di çend qonaxan de derbas bûye û xwediya vê ramanê jî Fewziye bû û xebateke zêde li ser vê mijarê kiriye. Pêşî di sala 2008ê de ji aliyê kesekî xêrxwaz û yekîtiya jinan û fermangeha mafê mirovan li Ranya 40 keç û îsal jî di hundirê du heyvan de 95 keç hatine azadkirin. Beşek ji wan bi pereyan hatine berdan û ev pere jî ji aliyê Hêro Îbrahîm Ehmed hatin dabînkirin.

Ezîz Ehmed, kadroyê beşa civakî ya komîteya rêkxistina YNKê li Sengeser, dibêje: "Gellek caran em rastî kêşeyan hatine ji ber wan kalemêrên ku wiha bawer dikirin ku nabe niha jî ew bên berdan. Lê ciwanan pirr bi kêfxweşî bersiva me dan."

## Li Amedê du jinên ciwan xwe kuştin

**Amed (Rûdaw) -** Li navçeya Bîsmîlê ya ser bi Amedê du jinên ciwan bi navê Nurhan Demir (23) û Ayşe Altunç (23) kuştî hatin dîtin. Hate îdîakirin ku Demîr û Altunç xwe kuştine.

Li navçeya Bîsmîlê ya Amedê roja 9ê Nîsanê jina ciwan a bi navê Nurhan Demir (23) ku li taxa Sanayiyê rûdinişt, bi benekî daleqandî hate dîtin. Malbatê cenazeyê Demîr şandin Nexweşxaneya Dewletê ya Bîsmîlê û piştre şandin Zatiya Tipa Edlî ya Amedê. Nurhan Demir bi dergistî bû, lê derbarê sedema mirina Demîr de agahî nehat girtin.

Li gundê Xanoserê yê navçeya Bîsmîlê jî heman rojê jina bi navê Ayşe Altunç (23) bi keleşkofa xezûrê xwe dawî li jiyana xwe anî. Cenazeyê Altunç ji bo rapora otopsiyê şandin Nexweşxaneya Dewletê ya Bîsmîlê û ji wir jî şandin Saziya Tipa Edlî ya Amedê.

# Ji bo ku ti Rojanên din nebin qurban



**Silêmanê Alîxan**

Spêdeya 9ê Nîsana 1991ê li devereke ser sînorê bakûr û başûrê Kurdistanê, hestkirina bi sermayê ez ji xewê hişyar kirim. Xwika min a çar salî Rojan li kêleka min a rastê razayî bû. Lê serçavê wê yê xweşik û bêdengiya wê ya ne normal ez tirsandim û dema min destê xwe dirêjî wê kir jî, weke perçeyeke darî bû, loma min dayika xwe zû ji xewê hişyar kir û min gote wê "rabe, Rojan req bûye!" Bi rastî min berî wê demê mirî nedîtibûn, loma min nedizanî ku reqbûn nîşana mirinê ye. Mehekê piştî vê bûyera trajîk, wate di 9ê Gulana heman sale de, dayika min jî ji vê jiyanê barkir, ji xemên jidestdayîna hezkiriyan, dubare dûrketina ji kesûkaran û ji ber nexweşiyên giran ên koça milyonî.

Helbet ne ev bi tenê bûn trajediyên ku hejmare 9 bo me anîn û bûne sedema ku mirov bi çavekî reşbîn berê xwe bide vê hejmarê. 28 salan berî wê dîrokê û bi dirustî di dorên demjimêr 9ê sibeha 9ê Îlonê de, bavê min di çeperekî parastina xaka Kurdistanê de bi giranî birîndar bû û heta niha jî seqet maye. Piştî 18 salan ji vê bûyerê jî pismamê min ê herî mezin jî di çepereke din ê rîzgarîxwazî de şehîd ket.

Herwiha çend bûyerên din ên ji vê corê di demjimêr, yan roj yan jî meha 9ê de bi serê me hatine. Lê ketina peyker û desthilata mezintirîn diktator û dijminê stemkarê gelê me di 9ê Nîsana 2003yê de, ango di 12. salvegera wefata Rojanê de, ev reşbîniya ji vê hejmarê revand.

Van deman jî ku min serdana penaberên Kurdên Rojava dikir li kampên Dumîz û Muqiblê, herwiha di dema sazkirina dîdarên rojnamevanî ligel çendîn penaberên Kurdên Bakûr û Rojava Kurdistanê li qeza Zaxo, min guh li çîrok û serhatiyên trajedîk ên çendîn kesan dabû ku di roj û demên diyarkirî de bi serê wan jî hatine. Herwiha min didît ku perê rewşeke bêhêvîbûnê xwe bi ser wan de dadaye, ji ber berdewambûna trajediyan û ji ber ku ev penaber li vir jî di nava birayên xwe yên Başûrî û di bin desthilata kurdî de jî hest bi girîngîdayînê naken, bi taybet ku îdareya parêzgehê xemsariyê dike di gihandina hin pêwîstiyên rojane yên basît de bo van birayên me yên lêqewmî.

Lê her çawa be jî, ez ne weke wan bêhêvî û reşbîn im. Ez bawer dikim ku wê di demeke nêzîk de peykerên hemû dîktator û dagîrkerên welatê me bikevin. Herwiha hemû hejmarên ku reşbînî û tirs bo Kurdan û wî perçeyî û hemû perçeyên din ên welatê me anîne, wê bibin rojên bêhnvedan û bîranînên xweş. Lê di roja me ya îro de, pêwîstiyeke li ser me weke gel ku em destê arîkariyê bidin van birayên xwe, daku ti Rojanên wan jî nebin qurban û ti dayikên wan jî xema jidestdayîna hezkiriyan nekşînin.

# Greva birçîbûnê li Strasbourgê



**Ahmet Dere**

Ji meha Sibatê vir ve li Kurdistan û Tirkiyeyê grevên birçîbûne hene. Bi taybetî di zîndanan de heman çalakî dorfireh bûye.

Ji 1ê Adarê vir ve li Ewropayê jî heman çalakî hatiye destpêkirin. Çalakiya herî mezin li Strasbourgê ye. 15 kes ji destpêka heman çalakiyê ve di grevê de ne, her 5 rojan carekê jî bi dehan kes, ji cûr be cûr welatên Ewropayê, tên Strasbourgê û dikevin heman greva birçîbûnê. Heya niha nêzî 300 kes hatine vî bajarî û ketine vê greva birçîbûnê. Di heman demê de li cûr be cûr welatên Ewropayê jî, bi giranî di komeleyan de, hejmarekê mezin a çalakiyên greva birçîbûnê çêbûne. Li hin deran hêjî dewam dikin.

Grevên birçîbûnê cureyeke çalakiyên herî pasîf û demokratîk e. Lê belê li Ewropayê ji aliyê hin derdoran ve heman çalakî weke auto-torture (îşkenceya xwe bi xwe) tê dîtin. Lewre, bi taybetî ji salên 2000î vir ve ji çalakiyên grevên birçîbûnê re zêde alîkarî nayê dîtin.

Li gorî çalakvanên li Strasbourgê, armanca sereke ya vê greva birçîbûnê ev e; divê rayedarên tirk destûrê bidin parêzerên birêz Ocalan daku ew bikaribin pê re hevdîtinan pêk bînin û ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd bi birêz Ocalan re guftûgo bên çêkirin (Di nava rêzedaxwazên heman çalakvanan de azadiya hemû girtiyên siyasî jî heye).

Weke tê zanîn Strasbourg bajarekî navendî yê Yekîtiya Ewropayê û yê Konseya Ewropayê ye. Dadgeha Mafê Mirovan ya Ewropayê û beşê wê CPT (Komîteya Li dijî Îşkenceyê) li heman bajarî ye. Armanca pêkanîna vê greva birçîbûnê li vî bajarî hebûna navenda van saziyên navneteweyî ye. Lê mixabin, digel ku ev bû mehek û nîv heman çalakî didome û tendirustiya hin çalakvanan ketiye rewşeke xeter, hêjî nêzîkatiyekê layîq ji aliyê saziyên Yekîtiya Ewropayê û herwiha ji aliyê CPT ve nehatiye raber kirin.

> **Dewleta tirk hemû kiryaran li gorî qanûnên xwe dike. Saziyên ewropî nikarin destê xwe dirêjî pirsgirêkên navxweyî yên Tirkiyeyê bikin.**

Di nava van 45 rojan de çend caran parlementerên ewropî, nûnerên rêxistinên civakî yên herêma Strasbourgê û rayedarên şaredariya bajêr hatine serdaniya çalakiyê. Ev serdanî tenê di çarçoveya rêzdariyê de mane, heya niha gaveke bi bandor nehatiye avêtin. Wisa diyar e ku wê heman nêzîkatî dewam bike.

Derbarê vê greva birçîbûnê de min ji cûr be cûr derdorên van saziyên li Strasbourgê agahî xwest. Bi kurtayî rayedarên ewropî wiha dibêjin; «Derbarê hevdîtinên parêzeran û birêz Ocalan de em nikarin tiştekê bikin. Dewleta tirk hemû kiryaran li gorî qanûnên xwe dike. Saziyên ewropî nikarin destê xwe dirêjî pirsgirêkên navxweyî yên Tirkiyeyê bikin ».

Bêguman ev nêzîkatiyeke parazvanî ye. Derbarê Kurdan de Ewropî herdem heman tiştan dibêjin. Lê belê dema ku mijar dibe pirsgirêka azadiya olî û herwiha ya Kibrisê, nêzîkatiya Ewropiyan cuda ye. Tenê derbarê Kurdan de Ewropî naxwazin xwe tevlî pirsgrêkên « navxweyî » yên Tirkiyeyê bikin. Divê ev jî weke durûtiya Ewropiyan were dîtin.

Li gorî min, divê helwesta Ewropiyan di destpêkê de hatiba nirxandin û armanca vê çalakiyê baştir û bi awayekî realîst hatiba tespît kirin. Carnan, digel çalakiyên pirr lewend jî, hin daxwaz nayên qebûl kirin. Çalakiya ku daxwaza wê neyê qebûl kirin, bandoreke neyênî çêdike. Ez hêvîdar im ku çalakiya li Strasbourgê bi encameke neyênî bi dawî nebe û bi taybetî keda lewend ya 15 çalakvanan vala neçe.

## DYA û Herêma Kurdistanê
# Pêwendiyeke taybet?



**Hîwa Mehmûd Osman**

Daxuyaniya fermî ya Qesra Spî derbarê pêwendiyên wan bi Kurdistana Îraqê re gaveke girîng e ber bi nasandina Kurdistanê ku cuda ye 'lê ne parçekirî ye' ji Îraqê, lê dîsa jî hêjî maye ku pêwendiyeke wê ya serbixwe bi Herêma Kurdistanê re hebe. Daxuyanî ji aliyê Qesra Spî ve bû, piştî ku Barack Obama tevlî civîna di navbera cîgirê serokê Amerîkayê Joe Biden û serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî de bû.

Digel ku ragihandibû ku Amerîka "pêbend e bi wê pêwendiya nêzîk û dîrokî ligel Kurd û Kurdistanê", lê vekirî jî dibêje ku ew pêbendî "di çarçoveya hevbendiya stratejîk e ligel Îraqeke federe, demokrat û hevgirtî." Bi gotineke din, ti pêgeheke taybet ya Kurdan bi Amerîkayê re tine, yanî ji wan hatiye daxwazkirin ku Îraqiyên baş bin. Beşa duyem ya daxuyaniya Qesra Spî eşkere dike ku serok Obama û cîgirê wî Biden "Serok Barzanî han dan ku beşdariya di proseya siyasî ya Îraqê de berdewam bike, li jêr sîbera destûra Îraqê."

Ev jî nameyeke ronî ye ku tê çaverêkirin Kurd beşek ji proseya siyasî ya Bexdayê bin û ew pêgeha taybet ku timî behs dikin, neketiye nav siyaseta Amerîkayê li hember Îraqê.

Her wek daxuyanî jî diyar dike, tekane pêgeha taybet ya Herêma Kurdistanê ku li cem Amerîkayê hebe "Şêwirmendiya ast bilind e di navbera berpirsên amerîkî û nûnerên hikûmeta Herêma Kurdistanê de."

Ji bilî ku bi nehênî hatiye gotin, ew daxuyanî divê wek bibîrxistinekê be bo Kurdan ku ti pêgeha taybet ya Kurdan li cem Amerîkayê nîne û hêjî rêya Kurdan ber bi Amerîka di Bexdayê de derbas dibe. Herwiha divê ev daxuyanî wê yekê jî bîne bîra Kurdan ku pêwendiya wan bi Amerîkayê re bi rêya rawêjkarî û heya hemahengiya leşkerî û ewlekarî xurt nabe, lê divê bi wê rêyê be ku Amerîka bi cîhanê nîşan bide ku Herêma Kurdistanê cuda ye ji beşên din ên Îraqê.

> **Divê Kurd jî wê yekê nîşanî Amerîkayê û civaka navdewletî bidin ku bi rastî herêma wan "Îraqeke din" e.**

Divê Kurd jî wê yekê nîşanî Amerîkayê û civaka navdewletî bidin ku bi rastî herêma wan "Îraqeke din" e. Divê Kurd modelekê deynin ji nirxên ku cîhana azad wan li ber çav digire. Desthilata baş û rêzgirtina nirxên mafê mirovan û azadiya ra û nêrînê, şefafiyet û nehiştina gendeliyê hemû jî gavên girîng in ji bo pêkanîna vê armancê.

Daxuyaniya Qesra Spî hêjî Amerîkayekê nîşan dide ku naxwaze bi beloqî pêgeheke taybet bide Kurdan li Îraqê. Beşek ji vê vedigere wê lobiya dijî-kurd ku li Washingtonê heye û beşek jî vedigere israra Amerîkayê li ser "Îraqeke hevgirtî, demokrat û federe."

Raporên vê dawiyê yên saziyên wek HRW û Amnesty International ligel raporên derbarê hebûna gendeliyê li Herêma Kurdistanê, qet ne alîkar in ku Herêma Kurdistanê bikin devereke taybet. Hikûmeta nû ya Kurdistanê divê nasnameyeke taybet ji herêmê re çêbike ku li ser hemû astên behskirî bi pêş bikeve. Tenê wê çaxê herêm dibe cîhekî taybet û rê xweş dibe li ber çêbûna pêwendiyeke serbixwe.

# Ev xwarin te xurt dikin

Mirov rojane dixwîne û dibihîse ku corekî xwarinê bo filan nexweşiyê yan bo organekî laşê me bi sûd e. Lê bila haya te ji hin corên xwarinan hebe ku xwarinên mejî ne û mimkun e heta hetayê sûdê jê bigrî.

## Kofeîn te hişyar dihêle

Hin madeyên weke kofeînê ku di qehwe û şokolatê de heye, te çalak dike û dibe sedema ku tu bêtir hişyar bî di kar û xwendinê de. Lê zêdekirina xwarinên bi kofeîn dibe sedema bêxewî û nearamiyê.



## Şekir garantiya xurtbûna mejî ye

Şekir baştirîn çavkaniya xwarina mejî ye. Helbet mebest ne şekirê spî, lê glîkoza vê şekir e ku laşê mirovan şekir û karbohîdratên wê distîne. Ev jî wisa dike ku xwarina tiştekî şêrîn îmkanên mejî bo demeke kurt zêde bike û îmkanên hizirkirinê jî lezgîntir bike. Tu dikarî di demên pêwîst de wan corên fêkiyan bixwî ku madeyên şekir tê de hene û mejî çalak dikin.



## Taştê xwarina mêjî ye

Tu dixwazî taştêya sibeyan nexwî? Lêkolînan îspat kirine ku xwarina taştê dibe sedema başkirina hizirkirinê û asta haydarbûnê bilind dike. Ev xwendekarên ku nanê sibeyan dixwin dikarên testên xwe baştir derbas bikin û ji xwendekarên ku naxwin zîrektir dibin.

Xwarinên ku di serê lîsteya zanyaran de ne, pêk tên ji fêkiyên ku rihên wan zêde ne: xwarinên ku ji genim û ceh tên çêkirin, şîr û berhemên şîr û ava fêkî. Lê zanyar dibînin ku bo sibeyan xwarinên qelew û xwedî germokiyeke zêde baş nîne.



## Masî bi rastî jî xwarina mejî ye

Masî bi Omega 3 û tirşiyên çewr dewlemend e ku çavkaniya bingehîn a karkirina mêjî û xurtbûna wî ne. Bandoreke mezin jî heye li ser xurtkirina mejî û Omêga 3 çeriyeke zêde tendirust e bo mejî.



## Gûz, fistiq û behîv

Gûz, fistiq û behîv çavkaniyên vîtamîn E ne ku dijî oksîd in. Tu dikarî di heftiyê de rojekê ji van xwarinan bixwî, bêyî ku rastî çewrî û germoka zêde ya xwarinê bibî.



## Danê xwarina tendirust bo mejî

Kêmiya xwarinên bingehîn di danên xwarinê de bandoreke xirab li ser mejî dike. Ev tişt derbarê hûrbîniyê îmkanên mejî kêm dikin, zêde xwarin jî dibe sedema xavbûn û bêzarbûn û îmkanên hizirkirinê jî lawaz dike. Herwiha kêmxwarin jî ne baş e û divê hevsengî hebe.



## Derman û tabletên enerjiyê û vîtamîn

Ev tenê bo wan kesan e ku danên xwarinên wan ne hemecor in û rastî bandorên din hatine. Xwarina van tiştan jî divê li ser xwesteka pizîşk be.

### Amadekarî bo rojeke serketî

- *Razana têr a şevê.*
- *Perwedekirina mêjî bo hizirkirina baştir.*
- *Dûrketina ji van tiştên ku mêjiyê te diwestînin yan dudiliyê çêdikin.*
- *Danekê xwarinê pêkhatî ji fêkî, keskatî, genim, masî, qehwe yan çayê.*



## Spasname

Bi navê Xwedayê mezin û dilovan, li ser navên malbatên xwe, pirr ji dil spasiya hemû wan birêz û xoşewistan dikin, ewên ku beşdarî behiya Xwedê jêrazî Mihemedsedîq Salih Nêrweyî, kadroyê pêşkeftî di şoreşên Îlon û Gulanê de, bûn.

Bi amadebûn, pêwendiyên bi rêya telefon, name, faks û e-mailan di rojên behiyê de ji welatên Almanya û Swîsre, li bajêrên Berlîn, Köln û Zürichê, we xema me sivik kir. Ji bo hevxemiya we hemû birêzan em spasdar û memnûnên we ne. Xwedayê mezin xêra we hemûyan binivsîne. Cîhê Xwedê jêrazî biheşta berîn be, serê gelê me sax be.

Rezvan Îhsan / Köln
Armanc Egîd / Berlîn
Seyfolah Ebdulwahid / Zürich



## Xaçepirs

**Çeperast:** 1-Alet û amûrek muzîkê – Kesên destbela, kesên zû tiştan dişkînin – Pîr, xam, yektîyar. 2- Hawar, alîkarî – Gundîyên ku erdên axê bi nîvî dajon û diçînin (berepaş) – Ne berî, ne hov, xwedîkirî. 3- Xeter, tehlûke, di xeterê de – Esîltî, payebilindî – Heywanek jehrîn (berepaş). 4- Şirovekirin, nirxandin – Vexwarinek bi alkol. 5- Beramber, miqabil, himber (berepaş) – Pêşnavê zanyarekî Alman, .....Marks (berepaş). 6- Nav yan reklamên ku li ser dikanan dikevin. 7- Qehreman û lehengê Newrozê. 8- Agir, namûs, heya – Nizm, kêm. 9- Teyare, balafir. 10- Bawerîya olî, bawerîya xurt – Ne tehl, tiştên bi şekir.

**Serejê:** 1-Bi taybet li gundan zad û zerzewat tê de tên hilanîn û paraztin – Net, sade. 2- Tiştên ku ji bo demekê û ji bo paraztinê li cem hinekan dimîne – Çek û sîlehek kevnare. 3- Bajarekî rojhilatê Kurdistanê – Damar, reh, kok. 4- Masîyek pir mezin (berepaş) – Mala koçeran, çadir. 5- Şahzade, ji malbata mîran. 6- Xwedayekî Sumeran – Li başûrê Kurdistanê pîrozgeha Êzîdîyan. 7- Xwarinek şîrîn ji hevîr, rûn û şekir. 8- Hesinê nerm (berepaş) – Nezera çavan, tîrên çavan. 9- Li Kurdistanê çiyayek bilind. 10- Bapîr, kalo – Bangdana melê. 11- Hew, hêç, tune, qediya (berepaş). 14- Koma pez. 15- Meha Newrozê. 16- Li Latîn Amerîkayê paytextê Perû yê.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | ■ | | | | | | ■ | | | |
| 2 | | | | | ■ | | | | | | | ■ | | | | |
| 3 | | | | | | ■ | | | | | | | ■ | | | |
| 4 | | | | | | | | | | | | ■ | | | | |
| 5 | | | | | | ■ | | | | | | | | | | |
| 6 | ■ | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | | |
| 7 | | ■ | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | |
| 8 | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | | | |
| 9 | | | | | | | ■ | | ■ | | | | | | | |
| 10 | | | | | ■ | | | | | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 141

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | T | E | B | A | X | ■ | M | A | R | M | A | S | Î | ■ | A | V |
| 2 | Î | S | O | T | ■ | B | E | X | T | E | W | A | R | Î | ■ | A |
| 3 | R | ■ | Ş | E | T | ■ | B | ■ | I | R | A | K | ■ | Ş | A | L |
| 4 | M | A | N | ■ | E | S | E | D | ■ | A | Z | Î | Z | ■ | R | A |
| 5 | E | ■ | A | Y | L | Î | S | R | A | M | | | | | | |
| 6 | H | A | Q | ■ | Q | E | T | ■ | S | ■ | | | | | | |
| 7 | ■ | V | ■ | T | I | R | ■ | A | T | E | | | | | | |
| 8 | D | I | R | A | N | R | E | Ş | ■ | R | | | | | | |
| 9 | A | S | A | Q | ■ | A | R | Î | Ş | E | | | | | | |
| 10 | M | E | H | Î | R | ■ | Ê | T | A | B | | | | | | |

Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Melîsa gellekî ji pişîkan hez dike





Bêyî pişîka xwe, Melîsa nikare bi şev razê jî, hewqasî Melîsa ji pişîka xwe hez dike. Bi şev Melîsa ligel pişîka xwe radizê. Melîsa dixwaze fêrî lêxistina gîtarê jî bibe û diçe kursên muzîkê. Ew herwiha ji wênekişandinê û dansê jî hez dike. Bi şev jî, beriya razanê, Melîsa pirtûkên çîrokan dixwîne. Ji ber ku hevala Melîsa (Şara-Zîn) Kurd e, Melîsa jî xwe weke Kurd dibîne û gellekî hewl dide ku hînî kurdî bibe. Melîsa dibêje ku gellekî kêfa wê were, dema ku ew wêneyê xwe di rojnameyeke kurdî de bibîne.

## Bi lîstika fasûlyeyan hînbûna hejmaran



Ev lîstok bi 10 fasûlyeyên mezin ên ku aliyekî wan bi rengê sor hatiye rengkirin, tê lîstin. Hejmara fasûlyeyan dikare bê guhertin jî. Mirov dikare lîstokê gellek caran dubare bike.

### Çawa tê lîstin?

Fasûlyeyan bike tûrikekî. Piştre bila zarokek fasûlyeyan birêjîne ser maseyê û hemû bi hev re bijmêrin, ka çend fasûliye bi aliyê sor û çend jî bi aliyê spî li ser maseyê ne. Paşê fasûlyeyan dîsa bikin nav tûrik.

Dema ku yek ji zarokan tûrik dihejîne û fasuliyan dirijîne ser maseyê, divê zarokên din çavên xwe bigirin. Dema ku zarok fasûlyeyên di tûrik de dirijîne ser maseyê, dibêje "fermo, ka bêjin çend fasûye bi aliyê sor û çend jî bi aliyê spî li ser maseyê ne. Zarokên din jî dihejmêrin û bersivê didin.

Paşê zarokek din tûrik dihêjîne û fasûlyeyan dirijîne ser maseyê û zarokên din heta dawiya lîstokê çavên xwe digirin. Zaroka ku fasûlye rijandin ser maseyê, bi qasî hejmara fasûlyeyên bi rengê sor destê xwe li hev dixe û dipirse: "Ka bêjin çend fasûlye bi rengê sor in?" Zarok bersîvê didin. Zarok paşê bi qasî rengê spî destê xwe li hev dixe û dîsa ji zarokên çavgirtî dipirse: "Ka bêjin çend fasûlye bi rengê spî ne?"

Û zarok bersivê didin.




Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk